BasNûçe
HERDEM RASTÎ
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar: 63
27 Tîrmeh - 02 Tebax 2015 basnews.com

## Dezz Deniz: Hip Hop serhildêr e

R16







# 'Em ji serxwebûnê venagerin'

Rêveberiya Herêma Kurdistanê mijara serxwebûnê ku piştî êrişên DAIŞ'ê ji bo demekê taloq kiribû, bi serkeftinên Pêşmerge yên li eniyên şer û bi dîplomasiya xwe ya serkeftî ya bi hêzên lûtkeya cîhanê re dîsa xiste rojeva xwe. Rêveberiya herêmê bi serxwebûnd aborî gaveke girîn avêtibû.

RHK'ê çend hefte berê bi ragehandina serxwebûna aborî peyama 'Em ji serxwebûnê venagerin' da Bexdayê. Barzanî jî dîsa ji eniyên şer ragihand û got: "Ev çend şehadet ji bo perçebûna Kurdistanê nehatin dayîn. Dû rê hene; Yan koletî yan jî serxwebûn." R02 - 03

## Tehran - Bexda
## Kemîna li dijî serxwebûnê

R10

## Dîroka bi hesreta Kurdistanê dagirtî!

R11

## Sihêtiya avê qontrola jiyanê ye



Li Bakurê Kurdistanê, mijara bendavan û bi taybetî jî bendava Farqînê cihê niqaşan e. Piştî ku PKK'ê ragihand ku êdî bendav armancen wê yên leşkerî ne û di van rojên dawî de şewitandina prêze, çiya û daristanan bû sedema bertekan me xwest em van mijaran bi berfirehî lêkolin. Hevberdevkê Meclîsa Ekolojiyê ya Amedê ya Tevgera Ekolojiyê ya Mezopotamyayê Gültekin Aydeniz, wêneyek pir xeternak ku divê bi lezgînî hawara wî bê qêrîn nîşan da. R08-9

## Armanc DAIŞ e yan kurd in?

Pêvçûn û şerê ku li Rojava di navbera hêzên kurd û komên tundirew de didome bi bobardûmana Tirkiye'yê gihîşt qonaxeke nû. Tê gotin ku mebesta bombardûmanê ne DAIŞ e lê ew pêkhate nîşaneya plan û amadekariya Tirkiye'yê ya ji bo avakirina herêma tampon û têkbirina destkeftiyên kurdan ên li Rojava ye. R04-5

# "Yan koletî yan serxwebûn"

Rêveberiya Herêma Kurdistanê mijara serxwebûnê ku piştî êrişên DAIŞ'ê ji bo demekî taloq kiribû, bi serkeftinên Pêşmerge yên li eniyên şer û bi dîplomasiya xwe ya serkeftî ya bi hêzên lûtkeya cîhanê re careke din anî rojevê.

Pêwendiyên bi Bexdayê re, li gel hewlên aştiyane jî di mijara şandina budceya herêmê û frotina petrolê de hin jî wek pirsgirêkeke mezin rawestandî ne. Ji ber daxwaza DYA ku şensekî dawî bide Bexdayê, RHK'ê hinekî din sebir kiribe jî, êdî zengila seetê ji bo serxwebûnê hatiye eyarkirin. Tê zanîn ku Hikûmeta Beexdayê ji ber ku ciddiyeta RHK'ê têgihîştiye, ev demek e ji bo pêwendiyan nermtir bike dixwaze hin gavên piçûk bihavêje. Lê belê RHK'ê çend hefte berê serxwebûna aborî ragihand û peyama 'Em ji serxwebûnê venagerin' da Bexdayê. Barzanî jî dîsa ji eniyên şer ragihand û got: "Ev çend şehadet ji bo perçebûna Kurdistanê nehatin dayîn. Dû rê hene; Yan koletî yan jî serxwebûn."

Li gel ku xeteriya bi peydabûna DAIŞ'ê re li rojhilata navîn belav bû û Kurdistan ji vê xeteriyê hate dûrxistin jî,bandora destpêkirina polîtîkayên nû yên Tirkiye, Îran û hin hêzên rojavayî ya li ser serxwebûna Kurdistanê şayanî meraqê ye. Ji alî din ve bandora li serxwebûnê ya geşedanên li ser enerjiya nukleerî ya di navbera Îran û hêzên rojavayî de jî wek wêneyek nepenî li pêş çavan e. Li ser herêmê destpêkirina polîtîkayên nû yên Tirkiyeyê ku tê gotin bi mebesta ku têkilyên xwe yên bi rojava re ku piştî peydabûna DAIŞ'ê derb xwaribûn ji nû ve baştir bike jî cihê nirxandinê ye. Her wiha xuya dike ku ji bo pêşî li hewla serxwebuna Kurdistanê bigire wê Îran hin daxwazên hêzên rojavayî bê dilê wê be jî wê bi cih bîne. Bêguman hemû ev geşedan wê bandorê li ser daxwaza serxwebûna ku niha derfetên baş jê re peyda bûne bike. Li gel hemû van geşedanan jî li Herêma Kurdistanê nîqaşên lezgînkirina xebatên referandûma serxwebûnê dom dikin.

Her çiqas Bexda ji bo pêwendiyên bi Hewlêrê re baştir bike daxwaza şandina budceya meha Gulanê bike jî li Başûrê Kurdistanê biryardariya serxwebûnê hin pihêttir dibe. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî ji eniyên şer bang li dost û neyaran kir ku li pêş wan bijarteyên serxwebûnê û koletiyê heye, lê belê ew ji bijardeya serxwebûnê venagerin û vê biryardariyê ragihand.

Daxwaza Bexdayê ya ku hewl dide budceya meha Gulanê bişîne Hewlêrê wek pêşîlêgirtina hewla serxwebûna Kurdistanê bê dîtin jî, ji bo polîta kurd di warê aborî de hewcedariya Tirkiyeyê û ji ber vê hewcedariyê beyankirina ku ew serxebûna Kurdistanê ji bo xwe wek xeterî nabîne, dikare di vê rexşa qeyranî de fersendeke baş peyda bike.



## Gelo kêmasiya mezin yekîtiya neteweyî ye?

Di hemû analîzên di derbarê hevsengiya herêmê de rîwangeya ku herî pir dertê pêş ew e ku ji bo Iraqê tu modêlên rêvebirinê ji vê modêla heyî xerabtir nînin. Li gel ku hemû aliyên siyasî yên Iraqê dizanin ku jixwe Iraq perçebûneke defakto dijî û vê rastiyê tînin ziman jî, daxwaza yekdestiya Iraqê ya hêzên derî Iraqê yên ku di siyaseta Iraqê de xwedî bandor in, ji bo Iraqê xeteriya herî mezin e. Daxuyaniya Serokê Parlamena Iraqê Selîm Cûbûrî ku da got, "Piraniya aliyên siyasî yên Iraqê, bi şerta diyalogê, aligirê perçebûna Iraqêne" jî vê nêrînê piştrast dike.

Li gel hemû van geşedanên derfetdar jî, mirov dikare sedemê derengxistina serxwebûna Kurdistanê ya mayînde, wek pêkneha(tin)nîna yekîtiya neteweyî ya kurd destnîşan bike. Bi mebesta ku piştgiriya civaka xwe ji dest bernedin, di daxuyaniyên xwe de ramanên xwe neyînin ziman jî teza YNK'ê û Tevgera Goran ku partiyên Îslamî jî heta radeyekî piştgîr in a ku 'rewşa siyasî û stratejîk a herêmê, ji bo serxwebûnê ne derfetdar e' di nav xwe de xeteriya ji destberdana vê fersenda dîrokî jî dihewîne. Ji alî din ve ji bo Başûrê Kurdistanê redkirina serxwebûnê û pêşniyazên kantonî yên PKK'ê jî sedemek din ê pirsgirêka yekîtiya neteweyî ye. Bi taybetî pêşniyazên PKK'ê yên kantonî yên ji bo Şengala ku rizgarkirina wê ya mayînde dikare bi rizgarkirina Mûsilê bê garantîkirin, di navbera PKK û PDK'ê ku dû hêzên mezin ên kurd in û dikarin hêsantir pirsgirêka yekîtiyê çareser bikin, dibe sedemê pirsgirêkên nû û rê li ber kombûna Kongreya Neteweyî digire.

Serokê Parlamenta Iraqê Selîm Cûbûrî di heman daxuyaniya ku me qala wê kir de, piştî DAIŞ'ê ji bo Iraqê wek xeteriya herî mezin Haşdî Şabî û ji ber grêdana wê ya organî Îranê destnîşan dike. Dema mirov pêwendiyên YNK û Îranê yên dîrokî û rojane yên nepenî dinirxîne, ji bo serxwebûnê zehmetiya yekîtiya neteweyî bêtir xuya dibe.

## Pirsgirêka yekîtiya neteweyî di rojeva çapemeniya cîhanê de ye

Pirsgirêka yekîtiya neteweyî di rojeva çapemeniya cîhanê de jî tê niqaşkirin. Rojnameya aborî ya navdar a Amerîkî Wall Street Journalê(WSJ), di derbarê mijara serxwebûna Kurdistanê de raporteke analîzî weşan. WSJ'ê di raporta xwe de balê dikêşîne ser şerê serkeftî yê ku RHK'ê li dij DAIŞ'ê dimeşîne û diyar dike ku ev serkeftina RHK'ê rê li ber serxwebûna Kurdistanê vekiriye û dibêje: "Lê belê di vê mijarê de pirsgirêka herî mezin pêknehatina yekîtiya kurdan e." WSJ'ê yekdestnekirina hêzên Pêşmerge bi gotina, "Di eniyan de jî niha hêzên Pêşmerge wek hêzên dû partiyan dabeş in." a Wezîrê Pêşmerge Mistefa Seyîd Qadir pirşgîr kirî ye û bi vê şîroveyê dom kirî ye: "Rikberiyên siyasî yên navxweyî li pêşberî serxwebûna Kurdistanê astenga herî mezin e. Bi peymana Sevrê re ji bo kurdan derfetên baş ên serxwebûnê peyda bûn, lê belê hem ji ber hewlên Atatirk û hem ji ber pêknehatina yekîtiya neteweyî ya kurd ev derfet têk çûn." WSJ'ê her wiha bi gotina dîktatorê rûxiyayî Saddam Huseyn a sala 1982'yan a, "Em ji kurdan natirsin; lewre jixwe di nav xwe de şerê hev dikin û belavbûyîne." jî bi bîr dixe.

Di derbarê serxwebûnê de bêguman helwesta DYA'yê şayanî merakê ye. Fox Newsê jî bi raporteke bi îmzeya Adam Housley dest avêtiye vê mijarê. Fox Newsê li gel destnîşankirina pêknehatina yekîtiya neteweyî ya kurd jî gotiye: "DYA bixwaze jî nexwaze jî kurd vê carê di mijara serxwebûnê de biryardar in."

Fermandarê Hêzen Zêrewanî yên Pêşmerge Kamran Hawramî di derbarê mijarê û hewlesta DYA'yê de pirsên BasNûçeyê bersivand. Hawramî got: "Li gel ku serxwebûna Kurdistanê dixwaze û bi RHK'ê re di her warî de pêwendiyên stratejîk dimeşîne jî, ji ber ku naxwaze pêwendiyên xwe yên dewletên herêmê xera bike, di mijara serxwebûna Kurdistanê de helwesteke piştgîrkar nîşan nade."

## Mesûd Barzanî: Ev çend şehadet ne ji bo perçebûnê ne

Li gel ku li ser mijara serokatiya wî gellek nîqaş hene jî, li derveyî kar û barên îdarî û dîplomatîk, Serokê RHK'ê di her fersendê de berê xwe dide eniyên şer û xebatên şer ên Pêşmerge kontrol dike. Barzanî di cejna Remezanê de jî li eniyan cejna Pêşmerge pîroz kir û li ser serxwebûn û yekîtiya neteweyî nirxandinan kir. Barzanî li eniya Hewlêr û Mûsilê destnîşan kir ku vê rewşa qeyranî ji bo gelê kurd derfetên mezin daye peydakirin, lê belê di vê pêvajoyê de hin kes ji bo Kurdistanê modêlên dû serî pêşniyaz dikin û got: "Tu kes nikare Herêma Kurdistanê dabeş û perçe bike. Wê gelê kurd bersiva vê helwestê bide. Dijminên me çi ji destên wan hat kirin, lê belê vîna gelê me neşikandin. Niha kurd li lûtkeya serkeftinê ne."

## Radestkirina F16'yan û peroşiyên DYA û RHK'ê

Di demeke ku li ser serxwebûnê di asta herî bilind de nîqaş gurr bûne de ji 36 frokeyên F16 yên ku Iraqê ji DYA'yê kirî bû 4 froke radestî Iraqê bûn. Ev frokeyên ku gihîştin Binkeya Hewayî ya Beleda parêzgeha Selaheddîn ji bo kurdan bû cihê fikaran. RHK'ê ku ji bo şerê li dij DAIŞ'ê û xeteriyên piştî serxwebûnê hewl dide serxwebûna xwe ragihîne da ku dikaribe bi serbestî çekên giran bikire, li gel ku di peymana kirîna van frokeyan de şertên ku bêyî pîlotên kurd ev froke nikarin bifirin heye jî, ji ber metirsiya rûdana şerê di navbera Iraq û Kurdistanê yê egerî heye ku piştî serxwebûnê derkebe egerî heye ku ev froke li dij kurdan bêne bikaranîn, bi fikar e.



Weke tê zanîn Hikûmeta Navendî ji bo xurtkirina hêzên xwe yên hewayî ji DYA'yê 36 frokeyên şer yên F16 kirî bû, lê belê DYA'yê bi şerta peymaneke ku wê di navbera wê Iraq û RHK'ê de bê îmzekirin frotina van frokeyan pesend kiribû. Li gor vê peymanê, bêyî pîlotên kurd ev froke nikarin bifirin û di rewşên ku pêwîstî bi yek pîlotekî hebe de jî ew pîlot wê kurd be.

## "Froke ji bo ewlehiyê ne"

Di derbarê 4 frokeyên şer ên F16 yên ku DYA'yê radestî Hikûmeta Navendî kir de Fermandarê Hêzên Zêrewan ên Pêşmerge Kamran Hawramî ji BasNûçeyê re ragihand ku ev 4 frokeyên ku gihîştine Iraqê, di çarçoveya peymana sê alî de wê li dij DAIŞ'ê bêne bikaranîn û ji ber ve peymana sê alî, wê ev froke ji bo siberoja Kurdistanê xeterî peyda nekin. Hawramî da zanîn niha li Frokexaneya Hewlêrê 10 frokeyên şer ên F16 û 16 helîkoptêrên Apaçî yên DYA'yê hene û ani ziman ku ev froke û helîkoptêr ji bo rewşên awarte yên xeternak li frokexanêyê Hewlêrê amade ne. Hawramî destnîşan kir ku heta egeriyên êrîşî yên li dij RHK'ê ji holê ranebin wê ev froke û helîkoptêr li Hewlêrê bêne rawestandin û got: "Bi saya xebatên hemaheng ên Pêşmerge û hêzên hevpeyman Herêma Kurdistanê niha herêma herî ewle ya Sûriye û Iraqê ye û Herêma Kurdistanê bi şêweyeke ku dikare bi lezgînî êrîşên li dij xwe berteraf bike tê parastin."

Ji alî din ve daxuyaniya Berdevkê Wezareta Derve ya DYA'yê John Kirby ya "Egeriya ku ev froke bikevin destê DAIŞ'ê ji bo me cihê metirsiyê ye." Balê kêşa. Weke tê zanîn sedemê xurtbûna DAIŞ'ê ya di warê çek û cebilxane de ew bû ku artêşa Iraqê beriya ku DAIŞ bikeve Mûsil û wargehên din ên Iraqê hemû çekên giran û cebilxaneyên wan li cih hişt û reviya. Li gel vê tecrûbeyê, artêşa Iraqê hin cebilxaneyên ku piştî destpêka şer hêzên hevpeyman radestî wê kiribû jî ji DAIŞ'ê re hiştibû û reviyabû.

## DYA-RHK: Em ê nehêlin teror wek karteke siyasî bê bikaranîn

Wêzîrê Parastinê yê DYA'yê Ashton Carter'ê ku ji bo hin hevdîtinên fermî bike li Ciddeya Erebîstana Siûdî bû, ji nişk ve hatibû Bexdayê û bi Serokwezîrê Iraqê Haydar Îbadî û Wezirê Parastinê Halid Ubeydî re hevdîtin çêkirin. Piştî van hevdîtinan Carter derbasî Hewlêrê bû û bi Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî re hevdîtin pêk anî. Hat ragihandin ku sedemê vê hevdîtina ji nişk ve frokeyên F16 û DYA'yê radestî Iraqê kiribû û geşedanên siyasî û şerê li herêmê ye.

Wezîrê Parastinê yê DYA'yê piştî ku li Bexdayê hevdîtinên xwe yên bi Serokwezîrê Iraqê Îbadî û Wezîrê Parastinê Ubeydî re temam kir derbasî Hewlêrê bû. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, Ashton Carter û şandeya li cem wî ku tê de Balyozê Bexdayê yê DYA'yê Stuart Jones û yê Hewlêrê



û pisporên leşkerî jî tê de hebûn li Ofîsa Serokatiyê ya li Selahaddînê pêşwazî kirin. Barzanî bi Carter re li ser şerê li Iraqê, operasyona rizgarkirina Mûsilê, qeyrana di navbera Bexda û Hewlêrê danûsitendinên ramanî kir. Barzanî, ji bo piştgiriya ku DYA û gel û rêvebirên DYA'yê daye RHK'ê sipasiyên xwe pêşkêş kir û ji bo dawîlêhanîna qeyrana li rojhilata navîn û pêkanîna aştiyê piştevaniya hevbeş a di navbera Kurdistan û DYA'yê ku heya niha bi awayekî serkeftî hatiye domandin pir girîng nirxand. Barzanî, pêdiviya Pêşmerge ya çekên giran jî anî ziman û got ku divê cihêrengiya netewî, olî û mezhebî ku piştî xilaskirina Mûsilê ji destê DAIŞ'ê pêk hatibû bi şêweyeke rêvebiriyê ku vê biparêze bê avakirin.

Wezîrê Parastinêe yê DYA'yê Ashton Carter jî anî ziman ku ji ber ku li Kurdistanê ye û bi Mesûd Barzanî re hevdîtin pêk anîye bextewar e û ji ber ku digel Hêzên hevpeymanî bi awayekî serkeftî xebatên hemaheng meşandiye Pêşmerge pesindar kir û got ku ji bo peydakirina pêdiviyên Pêşmerge ew ê hewl bidin. Her wiha Carter anî ziman ku piştevaniya DYA û RHKyê dê xizmeteke mezin li avakirina aştiya rojhilata navîn bike.

Di dawiya hevdîtinê de herdu aliyan jî diyar kirin ku ew ê destûrê nedin ew kesên ku bi peywenda berjewendiyên xwe nêzîkî terorê dibin û ew ê nehêlin ku teror, wek karteke siyasî bê bikaranîn.

## Barzanî û Parlamento, qirkirina Pirsûsê lanet kirin

Ji bo qirkirina Pirsûsê ji hemû deverên Kurdistan û cîhanê çalakiyên bertekî û peyamên şermezarkirinê tên. Serokê RHKyê Mesûd Barzanî jî , bi hilkefta qetlkirina 32 kesên ji endamên Federasyona Komeleyên Ciwanên Sosyalîst (SGDF) û sivîlan pêkhatî ku bi encama teqîna Riha/Pirsûsa li ser sînorê Sûrî û 10 km nêzîkî Kobanî ye pêk hatibû, peyameke şermezarkirinê weşand. Barzanî wisa got: "Ez vî êrîşî bi tundî şermezar dikim. Di êrîşa bombeyî a li Kurdistana Bakur de, rehma Xwedê li şehîdên me be, şîfayê xêrê bigihîje birîndaran û Xwedê sebrê bide malbatên wan." Her wiha Barzanî destnîşan kir ku ev êrîşa hovane û li dijî mirovahiyê diyar dike ku teror têk diçe û ew ê vîna mirovî a li dijî terorîzmê xurttir bike.

Parlamentoya RHKyê jî li ser vê mijarê peyameke şermezarkirinê weşand. Di peyamê de hat diyarkirin ku çalakiyên terorî karê tirsonekan e; ev, qirkirineke namerdî ye û ew vê qirkirinê bi nefretî şermezar dikin. Di peyama parlamentoyê de ciha dan van gotaran: "Tirsonekên DAIŞê ku li Rojavayê nedikarîn li dijî keç û xortên kurd têbikoşin bi qirkirinên bi vî rengî re hewl didin ku gelê kurd dev ji mafên xwe yên demokratîk berdin. Lêbelê bi vê êrîşê û êrîşên bi vî rengî rengî re gelê kurd ji bo bdestxistina mafên xwe hê wêrektir dibin. Rehma Xwedê li wan kesên ku jiyana xwe ji dest dane. Xwedê şîfayê xêrê bişîne birîindaran. Bijî têkoşîna mafdar a gelê me."

Ji bo qirkirina Piirsûsê, peyamên şermezarkirinê û çalakiyen bertekî ên bi vî rengî ji partiyên siyasî, rêxistinên civakî û ji gelî jî hat.

Li aliyekî din ji ber bikaranîna gotina 'Kurdistana Bakur', di peyama Şermezarkirinê a Serokê RHKyê Mesûd Barzanî de derûdorên nijatperest ên li Tirkiyeyê bertek hate dayîn. Ji Enstituya Tirkiyeyê a Sedsala 21ê ku nêzîkî MHPyê Müyesser Yıldız di berteka xwe ya dûrî rastiya dîrokî û rojane ye, bikaranîna gotarên 'Pirsûs' û 'Kurdistana Bakûr' wek skandal nirxand û bertek da bikaranîna gotara 'şehîd' a ku Barzanî ji bo 32 kesên ku jiyana xwe ji dest dabûn bikaranîbû.

## DAIŞ êdî ji bo RHK'ê ne xeterî ye'

Kamran Hawramî li ser rewşa şer û derbareyê eniyan de ji pirsên me bersivand. Hawramî got ku DAIŞ êdî li Başûrê Kurdistanê gefeke mezin nîne û ji xeynî pirsgirêka pênaberan ku hejmara wan ji 2 miltonî derbas bûye pirgirekeke cidî nemaye û jiyana civakî xwe xwe qulibandiye jiyana rewşa xwe ya asayî. Hawramî ragihand ku di eniyan de rewşa ahengdariya Hêzên Hewayê yên Hevpeymanî û pêşmergeyan gelekî baş e û DAIŞa ku bi saya vê ahengdariyê derbeke mezin xwar di nav sînorên Kurdistanê de ev qas bêbandor bûye ku nikare xwe biliptîne.

Hewramî anî ziman ku ji bilî azadkirina Şengalê bi awayekî bilez û mîsoger, tu bendîkariya operasyona Mûsilê tune. Her wiha Hewramî, nûçeyên hin çapemeniyên Başûrî ku gotibûn pêşmerge li Mûsilê êrîşeke mezin li DAIŞê kir derew derxist. Hewramî anî zimên ku pêşmerge wê tu car bi tena serê xwe êrîşî Mûsilê neke û wisa domand: "Ev nûçe bêbingeh e. Operasyona Mûsilê tenê dikare digel hemû aliyên hevalbend bê kirin. Ne pêkan e ku pêşmerge bi tena serê xwe êrîşeke bi vî rengî bike."

## Êdî Pêşmerge, artêşeke pispor e

Peşmergeyên ku bi sedema bi awayekî neamadebûyî rastî êrîşên DAIŞê hatibûn ku DAIŞê, piştî revîna artêşa Iraqê ji Mûsilê envanterên çekên giran bi dest xistibûn û êrîş li kurdistanê kiribûn, hatibûn rexnekirin; digel şert û mercên giran ên şerî di demeke kin de bi xwe ve hatibû û DAIŞ ji xaka Kurdistanê avêtibû, her wiha herêmên ku bi hikûmeta Iraqê re statuya wan nediyarkirî bûn xistibûn bin kontrola xwe.

Fermandarê Eniya Başûrê Kerkûkê û Serokê kevin ê Parlamentoya RHKyê Dr. Kemal Kerkûkî, li ser mijara şerê li Kurdistana Başûr ê li dijî DAIŞê got ku Hêzên Pêşmerge, di warê lihevkirinê de ji destpêka şerî heta niha di demeke kin de ezmûneyeke mezin peyda kir, digel ku şerekî mezin meşand, di heman demê de bi perwerdehiyeke bênavber kêmasiyên xwe ji holê rakir û êdî xwe qulibandiye artêşeke xwedî behreyeke mezin a şerî. Kerkûkî ragihand ku balafirên Hevpeymaniyê ji bo lêdana hedefên DAIŞê koordînatan ji pêşmergeyê distînin. Her wiha Kerkûkî got ku pêşmerge, di fahmkirina stratejiyên DAIŞê de nakeve tengasiyê û bi saya vê lihevkirinê DAIŞ êdî DAIŞ ji bo Kurdistanê gefeke mezin nîne.

## Ciwan ji başûr direvin

Ji ber ku di nav ciwanên Kurdistana Başûr de ji berê ve nexweşîna şêweya jiyanî a Rojavayî hebû bi hezaran ciwanên Başûrî bi mehniyên şert û mercên giran ên di nav şerî de, da ku hê weletir û xweştir e, bi hezaran dolar didin çeteyan û qefle qefle têrkî Kurdistanê dikin. Di vê pêvajoya ku ji ber şerî barên civakî û aborî giran bûye û kişkişînên siyasî nahêle meriiv pê re mijûl bibe de, di nav ciwanên ku daxwaza çûyîna welatên Rojavayî ku ji berê ve di wan de heye û hişmendiya neteweyî û hestyariya civakî di wan de geş nebûye de hê belav bûye. Ev daxwazên van ciwanên ku bawer dikin bi mehniya şerî dê bikaribin li welatên Rojavayî bi cih bibin, ji bo pêşeroja Kurdistanê jî nîşanî xetereyeke mezin dide.

## Parlamenê Tevgera Goran Şêrko Mihemed Emîn li ser vê mijarê daxuyanî dan BasNûçeyê û got ku

agahiyên li ser bi dehan ciwanên ku da ku birevin li derveyî welat her roj bi rê dikevin bi dest dixin û heke berê vî tiştî neye girtin ev yek ji bo pêşeroja Kurdistanê dê bibe sedema xetereyên mezin û divê hikûmeta Kurdistanê bi lezûbez li ser vê mijarê vesazkirineke zagonî çêbike. Şêrko Mihemed Emîn anî ziman ku derbareyê van ciwanan de di destê me de agahiyên rojane ên îstatîstîkî hene, parlamento heya niha derbareyê van ciwanan de vêsaziyeke zagonî an jî xebateke ku van ciwanan îstîhdam bike nekiriye û ji ber vê jî ev ciwan ji welat direvin.

Derbareyê vê mijarê de, ji Ajansa Nûçeyê ya Radyo Navxo ku navenda wê Silêmanî ye Rojnamevan Goran Îbrahîm Ehmed, diyar kir ku rewş hatiye asteke xeter û ev pirsgirêk tenê bi vesaziyên zagonî nikare bê çareserkirin û ji ber vê jî hişmendiyeke perwerdehiyê a ku li ser hîma wekheviya civakî û hezkirina welat avabûyî divêt. Her wiha Ehmed destnîşan kir ku rêxistinên siyasî li herêmên xwe hişmendiyên xwe yên bîrdozî di perwerdehiya zarok û ciwanan de jî van didin hînkirin, ev yek hestiyariyên parçebûyî dixe mêjiya ciwanan û heke awayekî cidî nêzîkî vê yekê nebin,di pêşerojê de ew ê encamên nexweş ên vê yekê dê bijîn.

# Hedef DAIŞ e yan kurd in?



Tirkiye'yê heta niha digel berdewamiya qeyrana siyasî û leşkerî rejîma Şamê ji xwe re kiribû hedef û piştgiriya hêzên dijber dikir. Herwiha wê bi hemleyeke din hewl da ku bibe parçeyek ji dengeyên li Rojhilata Navîn. Tê îdakirin ku Tirkiye da ku fikrên weke 'Tirkiye piştgiriya DAIŞ'ê dike" bişkîne, bergiriyê li avabûna dewleteke bi rengê kurdî ya li Bakurê Sûriye'yê bike û da ku bibe aktorekî li Rojhilata Navîn û Sûriye'yê ketiye şer. Lê belê Tirkiye'yê di heman demê de êrişî çeperên PKK'ê ji kir. Ji çileyê vê salê ve ye ku Tirkiye daxwaza xwe ya 'herêma tampon' a li rojava venaşêre û piştî hevdîtinên xwe yên 6 mehan ên digel DYA û hêzên hevpeymaniyê ew gihişte vê armanca xwe. Heta niha dihat gotin ku Emerîka li dijî pla-na Tirkiyeyê ya 'herêma tampon' derdikeve. Lê hefta borî piştî ku hevdîtina Obama û Erdo-gan pêk hat êdî navê vê heyamê bû 'lihevkirina Încîrlikê'.

Heta niha ti tişt di derbarê naveroka vê lihevkirinê de nayê zanîn. Lê belê li gorî daxûyaniyên rayedarên Pentagon û Qesra Spî ên malperên wan ev peymana hatiye pesendkirin. Li gorî nûçeyeke Ajansa Reutersê ya ku çavkaniya wê weke Berdevkê Wezareta Derve ya YDA'yê Mark Toner tê nîşankirin, hevdîtinên di navbera Emerîka û Tirkiye'yê de gelekî berfireh û kûr in. Her çiqas rayedarên Emerîka bibêjin polîtîkayên wan ên derbarê 'herêma tampon û herêma ji bo firokeyan hatî qedexekirin' de nehatine guhertin ji baregehên Tirkiye'yê yên li sînorê Rojava nîşan didin ku amadehiyên 'herêma tampon' têne kirin. Her çiqas rayedarên Tirkiyeyê piştî mirinên polîsên li Semsûr, Kilis û Edeneyê bêje ku wan li hember DAIŞ'ê dest bi têkoşînê kirine jî, gotinên wan berevajî derketin û di 24'ê gelawêjê de bafirokên F-16 ji bare-geha Încirlikê firiyan û çûn çeperên HPG û PKK'ê bombebaran kirin.

Li gorî agahiyên ku tên Hêzên Hewayî yên Tirk çiyayên Qendîl, Zap, Xinêre, Garê û Metîna bombebaran dike û li wan her-man gelekî kurdên sîwîl jî hene. Digel ku êrişên Tirkan bo kurdan ji aliyê rayagel ve bi metirsî tên şopandin Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî jî bi riya têlefonê li Serokwezîrê Tirkiyeyê Ahmed Dawûtoglû geriya û jê daxwaza rawestandi-na êrişên hewayî kir. Di van rojên ku DAIŞ û Rojava tên niqaşkirin de baregehên Tirkiyeyê yên li sînor weke gef û êrişeke li ser Rojava tê nirxandin. Beriya niha Tirkiyeyê ji ber vekiri-nan sînorên xwe ji bo komên tûndewar ên îslamîst dihate rexnekirin. Lê îcar ji operasyonên wê yên li dijî DAIŞ'ê bûne mijara niqaşan. Herwiha rêvebirên Rojava jî dema van operasyo-nan watedar dibînin û diyar dikin ku armanca sereke ya Tirkiyeyê astengkirina yekitiya kan-tonên rojava ye. Herwiha pevçûnên di navbera hêzên kurd û rejîma sûriyeyê de jî nîşan didin ku dê ev havîna li pêş me ji bo kurdan pir germ derbas be.

### "Tirkiye û DAIŞ hevalbend in"

Berdevkê YPG'ê yê Kobanê Şoreş Hesen di derbarê operasyonên Tirkiyê yên li Cerablûsê de ji BasNûçeyê re axivî.Hesen li ser angaşta ku YPG'e ber bi Rakkayê ve diçe rawestiya û daxuyand ku angaştan bi vî rengî ne rast in û hêzên wan ber bi Rak-kayê ve narin hêzên wan derdora bajarokê Sirrîne dorpêç kirine ew wan rêya Siirîn û Rakkayê girtiye destê xwe. Di berdewamiya axafrtina xwe de Hesen bal kişand ser ope-rasyonê Tirkiya ya li Sûriyê jî û ragi-hand ku wan beriya niha bi gelek caran bang li Tirkiyê kiriye ku ew bi hevre li hember DAIŞ'ê şer bikin lê belê Tirkiyê guh nedaye banga wan û bi DAIŞ'ê re tifaq durist kiriye. Her wiha di berdewamiya axaftina xwe de Hesen dest bişan kir ku ew ê operasyonên Tirkiyê bê encam bin û wiha berdewam kir: " Sînorên Tirkiyê her tim ji DAIŞ'ê re vekirî bûn. Eger Tir-kiye deriyên xwe yên sînor ji DAIŞ'ê re bigirta û ji mêjve hema-heng ba bi koalîsyonê re ew ê DAIŞ ewqas mezin nebûya. Ew ê koalîsyon operasyonên berfireh li hember DAIŞ'ê bi en-cam bida û ew ê DAIŞ ji herêmê bihata derxistin. Hem Tirkiye DAIŞ'ê baş nasdike û hem jî DAIŞ' Tirkiyê baş nas dike."

### "Emê Rojava biparêzin"

Di berdewamiya axaftina xwe de Hesen bal kişand ser hemahengiya di navbera Amerîka koa-lîsyona navdewletî û Tirkiye. Her wiha Hesen daxuyand ku sedema vekirina Balafirxaneya Încirlîkê ya ji Amerîka û koalîsyonê re şerê kurdên Rojava ye û Tirkiye dixwaze li sînore Rojava 'herêmeke tampon' ava bike. Her wiha Hesen eşkere kir ku Tirkiye naxwaze kantonên kurdan bigihêjin hev çavê wê li wê yekê ye ku derbasî herêma Cerablus û Merayê bibe û li wir bi cih bibe. Hesen li hêla dain da zanîn ku eger ji Tirkiyê êriş bê ser Rojavayê Kurdistanê ew amadene bersiva Tirkiyê bidin û wiha berdewam kir: "Em yekser dikarin bêjin ku sedema êrişa Tirkiyê ya li Cerablusê kantonên kurdan in. Tirkiye naxwaze kantonên kurdan bigihêjin hevdû. Helkefta herêma ewle û herêma tampon li hember destkeftiyên kurdan in. Me heta niha Rojavayê Kurdistanê li hember hemû êrişan parastiye û emê ji niha û pêve jî di parastina wê de berdewam bin. Eger Tirkiyê êrişî Rojava bike em amadene bersiva wan bidin."

### "Divê Tirkiye êrîşî DAIŞ'ê bike"

Serokê Partiya Pêşverûya Demokrata Kurdistana Sûriyê (PPDKS) Hemîd Hecî Dervîş jî li ser geşedanên dawî yê li Sûriyê û Rojava sekinî û daxuyand ku ew ji êrişên Tirkiyê yên li ser Sûriyê kêfxweş in û ew dixwazin ku ev operasyon berdewam bikin. Her wiha Dervîş amaje bi wê yekê ji kir ku Tirkiyê ji bo îmaja xwe ya navdewletî durist bike dest bi operasyonên li hember DAIŞ'ê kiriye û divê Tirkiyê di wan operasyonan de berdewam be.

Di berdewamiya axaftina xwe de Dervîş bal kişand ser bicîkirina leşkeren a li bajarên Kilis û Dîloka Bakûrê Kurdistanê û ragihand ku îhtimala ew ê yekê nine ku Tirkiye derbasî Rojava bibe û şerê Rojava bike û divê Tirkiye li hember DAIŞ'ê rawest e û şerê DAIŞ'ê bike. Her wiha li hêla din Dervîş daxuyand divê PYD û Tirkiyê li hem-ber DAIŞ'ê şer bikin û wiha ber-dewam kir: "Eger Tirkiye êrişî Rojava bike ew ê xeletiyeke mezin bike. Divê Tirkiye li Roja-va û Sûriyê leşker bi cih neke.Bi tenê alşkariya koalîsyonê bike."

### "Ew ê li Rojava geşedanên nû pêk werin"

Endamê Partiya Demokrata Kurdistana Sûriyê (PDKS) Abdûlhekim Beşar jî li ser vebûna Balafrxaneya Încirlikê ya ji koalîsy-on û Amerîkayê re rawestiya û dest nîşan kir ku Tirkiye di siyaseta navdewletî de bi tenê mabû û ji bo dawiyê li tenêtiyê bîne û polîtîkaya xwe ya Sûriyê biguherîne bi koalîsyonê re hemaheng e. Her wiha Beşar eşkere kir ku ew ê li Rojava geşe-danên nû rû bidin û wiha berdewam kir: "Ew ê li Sûriyê û li Rojava geşedanên nû pêk werin. Eşkere dibe ku ew ê Esed nemîne. Divê PYD jî siyaseta xwe biguherîne. Em bawernakin ku ew ê Tirkiye êrişî Rojava bike. Divê Tirkiye û PYD bi hevre li hember DAIŞ'ê şer bikin."

### "Li ser Tirkiyeye'yê zor heye"

Hevseroka PYD'ê Asya Abdûlah jî bo Basnûçeyê axivî û diyar kir ku polîtîkayên Tirkiyeyê yên Rojava şêlû ne. Asya Abdûla derbarê amadehiyên herêma ewlehiyê de jî rexneyên xwe anî ziman û operasyonên Tirkiyeyê bi zimanekî tûnd rexne kir. Herwiha Abdûla got, "Tirkiye dostê DAIŞ'ê yê bi mor e." Û diyar kir ku tevlîbûna Tirkiyeyê bo hevpeymaniya li dijî DAIŞ'ê tişteki stratejîk e û diyar kir ku piştî têkçûna DAIŞ'ê tevlîbûna operasyoneke wisa jî watedar e. Asya Abdula bertekên tûnd jî bo polîtîkayên Tirkiyeyê yên Suriyeyê nîşan da û got, "Tirkiye ji ber zextên rayagel li dijî DAIŞ'ê dest bi têkoşînê kir. Weke ku hûn jî dizanin bi salan e ku navê Tirkiyeyê bi îtifaqa digel DAIŞ'ê tê bilêvkirin. Endam û çekên DAIŞ'ê di ser Tirkiyeyê re derbasî Suriyeyê dibûn. Serkeftinên mezin ên kurdan û têkçûna DAIŞ'ê li rojava bûne sedem ku Tirkiye polîkayên nû bi rêve bibe."







### "Em amade ne rojava biparêzin"

Ji hêleka din Evdilla got, herêma tampon ya ku Tirkiye dixwaze li herêmên Cerablus û Mera ava bike li dijî destkeftên gele kurd in, Duv re amajê bi vê yeke kir ku Tirkiye divê siyaseta xwe ya Rojavayê diyar bike û kurd take hêz in ku şerê dijî Daişê dikin. Evdilla dirêjayî pê da ku ewê bersiva êrişên Tirkiyê bidin û lê kir, take hêza kul i Sûrî bi Daişê re şer kir u wan têk bir kurd in, divê Tirkiye vê rastiyê bibine. Ger mudaxeleyek ji hela Tirkiye çê bibe em ama-dene hemû bersîvên pêwîst bidin. Me Rojavayê li hember hemû êrişan pasart, hêzên me ama-de ne û emê di pêşerojê de jî parastina xwe bidomînin.

### "Tirkiye ne samîmî ye"

Ji hêleke din Hevseroka Meclîsa Zagonsaz ya Kobanê Fewziya Evdo got, hemû bûyerên qewimîne amaje bi mudaxeleya Tirkiye ji Rojavayê re dike, Tirkiye senoryoyên nû li ser Sûrî dîvisîne ku têde mudaxeleya yeksere ji bo kurdan jî mewcûd e. Evdo ji Basnewsê re ron kir ku tevgerên Tirkiye yên li ser sînorê u operasyonên li Cerablusê hatin kirin jî bo kurdan weku hereşe tê watedar kirin, " Niha Tirkiye li dijî DAİŞ ê operasyonan pêk tîne, wate ev li ser Rojava hereşe ye. Em ê destkeftên gele kur dli Rojavayê hetta dawiyê biparêzin. Em ê Rojavayê ne ji DAİŞ ê re ne jî ji hêzeke din re nehêlin. Eger Tirkiye ji dil be bila alîkariya me bike, tene kurd dikarin DAİŞ ê têk bibin."

### "Tirkiye li hemberî me şer dike"

Hevserokê Meclîsa Zagonsaz Yê Kantona Cizîrê Ekrem Hiso siyaseta Tirkiyê ya li ser Sûrî bi zimanekî tund şermezar kir u got, Tirkiye Rojava û Suriyê bi komên tundrew yên îslamî da-girtiye û niha nikare li hember wan raweste. Tirkiye bi komên îslamî bu ye aliyeke ji şerê Rojavayê . " Tirkiye 5 salê mudaxeleye karen navxoyî yê Sûriyê dibe û agirê şer geştir di-ke.Dixwaze mudaxaleyîdestkeftên kurd li Rojavayê bike. Hukumeta AKP yeskere nebe jî bi rêgeha komên tundrew yên îslamî li hemberî be şer kir."

Dirêjayî axaftina xwe da û got ewê destkeftên gele kurd li Rojavayê biparêzin û herême ji çi hêzên terorist nehêlin. " Tirkiye hewl dide ku Cerablûs nekeve destê kurdan û kurd li Ce-rablûsê tunne bin. Me wekû kantonên Kobanê, Cizîr û Efrîne soz daye şehîdên xwe,em ê Rojavayê biparêzin. Ger Tirkiyê têkeve Rojavayê dê têkeve gola xûnê û dê nikaribe derkeve, hêvidar in heleyeke bi vî şiklî neke."

### "Pêvajoya aşitiyê bû qurbanê Sûriyeyê"

Parlementerê HDP ê yê Wan ê Adem Geverî jî got ku Tirkiye pêvajoya aşitiyê kir bi qurbanê siyaseta xwe ya Sûrî, Serokkomarê Tirkiye Recep Tayyip Erdoğan bi giştî şer li dijî kurdan ragihandiye, ev siyaset Tirkiyê dibe nav şerê navxoyî . "Tirkiye ji bere de dixwest bi hincetên herêma tampon û herêma ewleh mudaxeleyî Surî û Rojavayê bike. Amerîka û hêzên hevpeyman dijî vê yeke bûn û nehiştin pêk were. Tirkiye bi şiklekî mûsir van siyaseten xwe yên hele berdewam kir û bi têqîna kul i Pirsûsê qewimî Tirkiye nêzî şereke navxoyî bû ye. Tirkiye pêvajoya aşitiyê qurbanê vê siyasete kir û niha jî hewl dide îmaja xwe ya şikestî serrerast bi-ke. Geverî bi van gotinên xwe amaje bi vê yeke kir ku ev kêşe gihiştiyê asteki gelek me-tirsîdar.

### "Stratejiya nû ji bo kurdan e"

Serokê Navenda Lêkolînên Aştiyê ya Rojhilata Navîn a Navnetewî (IMPR) Veysel Ayhan jî da zanîn ku piştî ku Girêspî ket destê kurdan Tirkiye jî dest bi hewldanên herêma tampon û operasyonan kiriye. Ayhan ku bal kişand ser operasyona Tirkiye ya bo herêma Cerablûs'ê û wiha got, "Beriya ku Girêspî ket destê kurdan ti stratejiyeke Tirkiye ya di derheqê midaxaleki-rina Sûriye'yê de tunebû. Hin nivîskarên tirk bal kişandin ser Azaz û Cerablûsê û dan zanîn ku dê Efrîn, Kobanê û Cizîr bibin yek parçe û gotin divê Tirkiye midaxaleyî wir bike. Banga operasyona leşkerî kirin. Beriya vê tişteki bi vî rengî tunebû. Ew geşedan vê nîşanî me didin; ew planek e û niha ew plan tê meşandin. Bala xwe bidinê ew hemû niqaş û perasyon û hwd. Piştî ku Girêspî ket destê kurdan hatin rojevê. Piştî vê ewqas teqemenî û hêza leşkerî arasteyî herêmê hate kirin. Ew dane nîşaneya planeke nû ne."

### "Kurd DAIŞ'ê têk dibin"

Herwekî din Ayhan destnîşankir ku armanca sereke ya perasyonan pêkanîna yekîtiya Ce-rablûs û Azazê ye û wiha dirêjî da axaftina xwe; "Berê DAIŞ hebû. Niha DAIŞ nikare wê herêmê biparêze. Ji xwe rejîma Sûriye'yê lewaz e. Ger ku DYA'yê alîkariya kurdan bikira wê demê kurdan dikarî ku di 2-3 rojan de wê xetê bi temamî bixin qontrola xwe. Tirkiye naxwaze ku kurd li wê xetê serdest bin. Sedema yekem a operasyonê ew e ku DAIŞ nikare herêma di navbeyna qorîdora kurdan de biparêze ye. Hemû kesî dît ku kurd dikarin DAIŞ'ê têk bibin. Armanca esas ew e ku di navbera Efrîn û Cerablûsê de herêmeke bi sînor bê avakirin."

### Li Hesekê pêvçûn didomin

Pêvçûnên di navbera hêzên kurd û yên tundirew de destpêkiribûn jî didimin. Herwiha pêvçûnên di navbera hêzên kurd û rjîmê de yên li Hasekê jî berdewam in. Pêvçûnên di nav-bera rejîm û hêzên kurd de ku piştî êrîşkirina DAIŞ'ê rawestiyabûn, piştî ku DAIŞ ji aliyê kurdan ve ji herêmê hate derkirin careke din destpêkir. Hevserokê Kantona Cezîrê Ekrem Hiso ku di derbarê mijarê de agahî dan rojnameya me ragihand ku gel ji aliyê YPG'ê ve tê parastin û êrişên DAIŞ'ê ji aliyê hêzên kurd ve hatine feşkilandin. Hiso di derbarê pêvçûnên di navbera rejîm û Hêzên kurd de jî agahî dan û wiha got, "Piştî ku DAIŞ hat şikandin gelek cihên navendî û stratejîk û navenda bajêr ket destê kurdan. Kurd van deran diparêzin. Hêzên rejîmê ew yek nepejirandin û dest bi êrîşan kirin. Em destûrê nadin ku rejîm li Hesekê bibe xwedî biryarê. Hesekê girêdayî Rojava ye û parastin û birêvebirina wê jî di destê kurdan de ye û wê di destê kurdan de be."



BasNûçe 27 Tîrmeh - 02 Tebax 2015
KİRMANCKÎ 07



# Meseleya wujdanî û Zübük

**Ma bêrîme Zübükê Azîz Nesînî ser. Kitabê Azîz Nesînî de, Îbrahîm lajê Zübükzadeyî yo. Nameyê pîyê ey, seba ke zaf zurî kerdê û dolabî çarnê, şarê qeza no pira. Manaya Zübükî zî xora zurekerî, egoîstî, cûwazî ya. O, seba armancê xo herçî keno; merdiman xapeneno, şeleneno ûsn. Edî çi xirabîye ke esta ti şîkîna têdîne seba ey vajê.**

Zelal Gündüz

Tîya de ez wazena qalê di eseran bikerî. Nuştxanê nê eseran ra yew kurd o yew zî tirk. Kurd, Ahmed Muxtar Caf o, tirk zî Azîz Ne¬sîn. Ez bawer a ke ma kurdê ke Kurdîstana bakurî de ameyîme dînya û dibistananê tirkan de wendo, zêde ya kî kêm, pêro Azîz Nesînî nas kenîme.

Mavajîme ke ez bi xo, bi kitabanê Azîz Nesînî bîya pil. Coka Azîz Nesîn, cuyê mi de zaf cayêde mûhîm gêno (cêno). Nesîn, feqîrîye ra êno û destpêk de mektebê seyan de waneno. Peyê cû zî mektebê leşkerîye ra beno mezun û sey subay dest bi kar keno û hetanî çewres serre zî nê karî de gurîno. Çewres ra dime nê gureyî caverdano û beno Azîz Nesîn. O, welatê xo de xelkê xo hênî weş, henî bi lezet nuşneno ke halo ke ganî merdim pê bimermo, ma pê huyînîme.

Labelê A. Muxtar Caf winî nîyo. Çiqas ke ma hemwelatîyê yewbîn îme û kurd îme zî ma ra zaf kêmî kes derheqa ey û xebata ey de wayîrê haydarîye me. No semed ra, ez wazena Çend cumleyan ey ser o binuşnî.

Caf, sey Azîz Nesînî tebaqayanê binî ra nîno. O, asîlzade yo, prens o. Cafan ra lajê Osman Paşayî yo. Xora peynameyê xo kî na eşîre ra êno.

Caf, merdimêde fikirakerde yo, şorişgêr o. O, wexto ke Îngîlîzî Hukmatê Şex Mahmudî anê war, Kurdîstan de sey bûrokratî îdareyê îngîlîzan de gurîno. O îdare, seke Cafî zî kitabê xo de zî nuşto; xelkê feqîr û bindestî, bi hetkarîya feodalan îdare keno. No sîstem de zulimkarî feqîran tayêna kenê feqîr, bi xo zî her roj tayêna benê zengîn.

Caf, feqîrîya xelkê xo ya bêhesabe bi mîzah hênî bi hostayîye nuş¬neno ke merdim şaş û heyran maneno. Ez vana eke Kurdîstan azad bîyêne, o zî sey Nesînî bîyêne nuştoxêde dinya. Hetê nuştoxîye de bingeyê Cafî zaf xurt o.

Nika ma nuştoxan bidîme ra hetê, bêrîme eseranê înan; yanî "Meseleya Wijdanî" û "Zübükî" ser. "Meselaya Wijdanî" nameyê kitabê A. Muxtar Cafî, "Zübük" zî ye Azîz Nesînî yo.

"Meseleya Wijdanî" çi ya? No wijdan o ke ma ser o hende vindenîme, anîme benîme, se kênîme bikîme; ancîya zî pê ey, ma xeta û xirabîyanê xo ra nêxelesînîme ra... Ma ra vanê "merdim" (însan); merdim wazeno ke timî aver şoro. Nê averşîayîşî ra vatena mi şaş meyêro famkerdene. Averşîyayîş, merdimî ra gore beno ke bivurîyo.Mavajîme tayê merdimî nêwazenê astengî-mastengî rayîrê înan ser bivejîyê ke bi rehetîye û bi hizur waştişanê xo bîyarê ca. Xora dolimê ke dest pêkerd êdî ti nêşkîna rayîrê înan ser o vinderê. înan êdî gonîya xo kerda çimanê xo, qet wijdan- mijdan nêno vîrî. Senî ke ma de vanê; "maye ewladê xo eşto" bi o qeyde.

Mi ke "Meseleya Wijdanî" wend, ez heyran menda. Bi rastîye, seba ke mi kurmanckî nêzanîtêne, mi bi kurmanckî kitabî nêwendîbî. Labelê par ra mi dest pê kerd, ez kurmanckî musa û wanena. Ez edebîyatê kurdkî yo bi kurmanckî musaya. Wexto ke mi dest pêkerd û wend ez zaf xêmgîn bîya, mi va "xezîkena mi raver dest pêbikerdêne." Mi çimê xo de zaf kerdîbî girs ke musayîşê kurmanckî zor o. Labelê ez musa ke çîyo ke ti cira hes bikere, çi yan zî se beno bibo, ti bi rehetî û keyfweşîye musena. Meseleya Wijdanî zî o qeyde...

Edebîyatê Kurdkî de mîzah, zaf şî weşê mi. Seba ke ma kurdî, berm û haware ra, derd û kulan ra, lorik û suyaran ra hem hes kenîme hem zî zereyê înan de ciwîyenîme, aye ra, her çîyê mayo serkewte zî sey cuyê ma yo. Xora no çîyêde temaşe kî nîyo. Yew feylozofî vato ke "merdim çi bo, se biciwîyo henî qisey keno". Labelê merdim eşkeno qederê xo bivurno. Qet mebo zî, şîkîno sey A.M. Cafî bi leq û lûqan bîyaro ra zîwan. Goreyê mi, tesîrê ney merdimî ser o tayêna xurt o. Tewr kêmî mi ser o wina yo.

Aye ra, kitabe A.M. Cafî ra mi zaf hes kerd. Xezîkena ey cuya xo de her tim tena şîirî nê hîkayeyî zî binuştêne. Sey Azîz Nesînî. O yo ke ca amo ez naye vajîne; qelema înan goreyê mi sey yewbînan a. Xora Meseleya Wijdanî û Zübük, tivana yew pîyayî nuşto. Tena zîwan û zemanê înan yewbînî nêgêno. Aye ra dot; merdimî, xelk, feqîr û merdimo cuwaz (kurnaz) û bêwijdan kitabanê her di nuştoxan de sey yewbînan ê.

Meseleya Wijdanî de qehremanê kitabî Zorab Efendî yo, ê Zübükî de zî Zübükzade Îbrahîm...

Meseleya Wijdanî de hîna ke qehremanê kitabî nebîyo Zorab Efendî, se û bêkes o û hetê lajanê apanê xo de şiwanîye, gawanîye û paleyîye keno. Bi a domanîya xo çi dest ra ame keno. Heta ke beno xort. Eke beno xort zî ey ra vanê: "Seyo ti êdî hayo bîyî xort, to şikînî xo bi xo îdare bîkerî". Seke qet nêxebetîyo ey ra na êna vatêne?

Hem zî seke bê name yo ey ra vanê; "Sê". Xora hîkaye de sere ra hatanî peynîye ma nameyê ey nêzanenîme. Seyî ra dime zî nameyê ey beno Zorab Efendî. Goreyê ma wendoxan zî verî o Sê yo. Bêpî û bêmaye yo. Pîyê ey şer de êno kîştene. Vatişê ey ra ma fam kenîme ke şerê ke mîyanê Îngîlîzan û Qiralê Kurdîstana Başurî Şex Mahmudî de bîyê, pîyê ey nê şeran ra ê yewine de amo kîştene. Xo ra kitab zî 1927- 28ine de ameyo nuştene.

Aye ra tepîya Sê bi maya xo ya belengaze ra tena manenê. Maya eya cefakare seba ke o biwano, mîyanê hende bêîmkanîye de zî, ey rê seba mektebî ar-du û wer-mer peyda kena. Labelê Homa aye rê êno rame û a zî Seyê xo yê belengazî tenayî û feqîrîye de caverdana şona. Seyo feqîro belengaz bêma û bêpî hênî mîyan de maneno. Wendişmendiş xo ra dest ra şono, o bi xo kî seke cor de zî ma va, seba loqmeyê nanê huşkî şono hetê lajê apanê xo û êdî çi kar bo, senê kar bo tede gurîno. Hetanî ke bî pîl û xort, lajê apan o eşt tever.

Êdî o, mîyanê bêkesî û belengazîye de xo rê ero çare gêreno. Cîya- cîya karan de gurîno, hete tucaran de, esnafan de çi kar ke rast ame keno.

Sê, raverî xortêde rast, wayîrê qerekterê baş û wijdanî yo. Zîyade mebo zî tayê şîno binuso û biwano. Esnaf û tuccarî, sey feqîr û fiqarayanê bînan heqa ey zî wenê, ey ser o zulm û zordariye nanê ro. O, hekmet û şaşîyede maneno û patronanê xo ra çiqas ke meseleya wijdanî perseno, vîneno ke cewabî têde sey yewbîn ê. Labelê ver bi înan nêvindeno û îtîraz nêkeno hama desinde vengê xo birneno. Peynîye de qayît keno ke bêfayde yo, kar û gureyê xo caverdano, tekneno şono gureyêde bîn.' Ge-ge zî cayê xo caverdano şono qezayêda bîne. Labelê na kî bêfeyde ya. Her ca, her gure, her patron rindbîyayîş hetê de, ê verênan ra hîna xirab û bêwijdan o. Ma nê têdîne kitab de, fekê qehremanî ra, yanî Seyî ra musenîme. Se bîyo, çi bîyo; o bi xo ma wendoxan rê qisey keno.

Ma bêrîme Zübükê Azîz Nesînî ser. Kitabê Azîz Nesînî de, Îbrahîm lajê Zübükzadeyî yo. Nameyê pîyê ey, seba ke zaf zurî kerdê û dolabî çarnê, şarê qeza no pira. Manaya Zübükî zî xora zurekerî, egoîstî, cûwazî ya. O, seba armancê xo herçî keno; merdiman xapeneno, şeleneno ûsn. Edî çi xirabîye ke esta ti şîkîna têdîne seba ey vajê.

Aye ra raver o bi xo, xo sey "Efeyê New Koyan" dano naskerdene. O muhacîr o labelê aslê xo kifş nîyo. Çi ame verê fekî vano û pesnê xo dano. Fekê xo rind gurîno û qisayanê weşan peyda keno, xelk zî îtîmadê xo pê ano û mîyanê xo de çi ke dest ra ame ci rê keno. Zübükîzade zî bi o qeyde wextêde kilm de beno dewlemend. Lajê ey Îbrahîm zî qet pîyê xo ra pey de nêmaneno. Tifiq sey ey bi zuran, dek û dola¬ban mîyanê xelkî de ca dano xo û hem erzîno sîyaset hem zî sîya şarî de beno dewlemend. Qey sîya şarî de? Seba ke şarî qeza û derûdorê ey, hende ke zur, cûwazî, dek û dolabanê ey zanê û her tim qerar danê ke ey mîyan ra bidarê we labelê o hemîne ra baqil û qurnaz o. Sey cinî çimê xo her çî ser o yo. Qayît keno ke çîyêde xirab êno sere, rayîrê doz keno. O çiqas gineno pîro û dame ra xelesîno ra hende zî beno berz. Xelk ancîya bi zuranê eyê neweyan tayêna rind xapîno û bi xo bi is¬rar û veragêrayîş ey ano maqamo tayêna berz. Ê her xapîyayîş de ey ra tayêna nefret kenê, ê çiqas xapînê û cira hevzê xo kenê dolimêna tayêna rind xapinê û dolimêna, dolimêna, dolimêna... Û her çi ke şî zî mîyanê xo de ey kenê berz. Heta ke tu hewceyê Zübüki înan rê nêmend.




Seba ke êdî o sîyaset de resto cayo tewr berz, na dolime kî merdimanê wendeyan, merdimanê sîyasîyan xapneno.

Bi kilmekîye, sey Zorab Efendî Zübükî zî xelk mîyanê xo de virazeno, ca dano ci û keno berz.

Zorab Efendî, Zübükî ra bi çend xusîsîyetanê xo vurîno:

O, feqîrîye ra êno. Keyeyê ey sey Zübükî zureker, dirxeyin, dek- dolabin, menfaatkar, pertîldayox nîyo. Ê feqîr ê û ma qerekterê Şeyî ra zî fam kenîme ke durustîye û wijdan hetê înan de çîyêde zaf muhîm o. Xora Sê bi na durustîye û wijdanê xo winî (henî) feqîrî û hêsîrîye an¬ceno ke hetê ra zerîya wendoxî pê vêşena. Wexto ke êdi no zulm û zorî ra aciz beno dest keno bi hîle û xirabîye û beno Zorab Efendî.

Zorab Efendî bîyayîşê ey, sereyê wendoxan de fikiranê cîyayan pey¬da keno, fikrê înan keno têmîyan. Yani kitab, sebebanê berzbîyayîşê qehremanî ser o merdimî dano fikirîyayene. Seba ke o hîna Se yo, mîyanê feqîrî û hîsîrîye de yo; tucarî, patronî, esnafî, axayî senî kedwerîye kenê, xelkî şelenenê; piştîya înan ra se benê zengîn, înan feqîr verdanê; vîneno. Vîneno û hekmete kuwno ci. Mesela yew esnaf wexto ke wextê tutinî ame dewijan de bi zîwanêde nerm, weş û kibar qisey keno. Tivana ke fek ra şekir rişîno. Nêzano ke înan rê se bikero. Ê zî hema bi rehetîye qan benê û xapînê. Çiqas tutin dest de esto, bi deyn têde danê ey. O zî goreyê keyfê xo, çiqas zerî ra ame ê fîyatî ra roşeno. Bi no tore, zengînîye nano ra zengînîye ser. Peydo ke wextê pereguretişî ame, dewijî seba peranê xo şonê labelê patron êdî ne kîbar o ne zî nermkanî qisey keno. Na raye feke ey ra şekir ne, jar rişîno de. Ê peranê xo ya qet nêgênê yan zî heqa xo ra zaf kêm gênê û korpoşeman peyser şonê. Ê yê ke heqa xo de înat kenê ê zî bi tehdît, qesa û xeberanê giranan ênê têrî. Tersê dewlete zî ser o yo. Seba ke hem qanunmanun nêzanê hem zî her çî hetê patronan der o, destan kenê xo ver ra, vilegewt fetelînê.




Zorab, taw o ke hemberê nê kerdişan de Wijdanî ano ra patronî vîrî, o wina cewab dano:

"Eke ez şerre de çar dewan înan dest ra megêrî, bi çi îdareyê xo ronî.

"To bîlasebeb wînî kerd, ê serrêna êdî tutinê xo nêroşenê to".

Patron huyîno û vano ke:

"Lajê mi, nê dewijî zaf her ê, ti vînenî serrêna dayîna rew ênê verê berê mi".

Rastî zî serra bîne eynî dewijî tayêna rew ênê berê patronî ke ancîya tutinê xo biroşê ey. Se, fikirîno, sebebo ke nê nîya kenê, halo ke xo kenê ci çik o? Peyêcu fam keno ke rîyê feqîrîye, bêgareyîye, tewr mûhîm rîyê cahîlîye ra. Ê hende fam kenê û seba ke patron nasê înan o bawerîya xo bi ey anê. Yewo ke nas nîyo ci ra tersenê. Tersenê ke tayêna xirab bo. Çiyo ke nêzanenê ey ra tersenê. Rîsk, xêşîmîye û newe ra musayişî ra tersenê. Ma û pîyanê xo ra, kalik û bawikanê xo ra çi musê eynî dewam kenê. Der-dormeyê înan de çi beno, çi, se raver şono hayî ro ci nîyê. Seke heywanê yabanî, seba ke bi xo zî yabanî yê û pilingî ra nêtersenê; bi o tore. O, înan buro zî qet o. Ê hende ke zanenê ke piling gogtwer o. Ê, naye ra zîyade çîyê nêzanenê.

Se, defê zî derheqa aveşîyayîşî patronê xo ra pers keno ke qey xo rê şîrketê nênano ro, qey makîneyan nêgêno û kara xo nîya bîlasebeb xerc keno. Patron duştê naye de vano ke:

"Ma kalik û bawikanê xo ra nîya musayîme. Kifşe yo ke ti sey wendeyanê nikayî fikirînî labelê ti rast nîyî, aqilê kalik û bawikanê ma nê neweyan ra hîna rind o".

Nê qisayê patronî hîkaye de her tim rastê ma êne. Mesela rojê şono camîye Seyê ma.Tîya mele bi erebkî waneno, merdimê ke goşdanê, înan zî kerda kurî û zurîye, bermenê.

Naye ser o yewî ra perseno:

"Goreyo ke to nîya bermena, to hema pêro mane ney ayet û hadîseyan zanena".

"Piye mi!" vano merdim. "Nê pêro erebkî yê, ez manê înan nêzanena, Çîyo ke ez zanena, nînan de behsê qebr û qîyamete êno kerdene".

Seyê ma bi nê cewabî nêmaneno, nafa kî perseno ke bi kurdkî êne çi mane cira vajo. Mele nê persî ser o beno xêx û vano:

"Ti kafir î qisey meke!"

Feke meleyî ra se ke nê qisayî vejînê milet beno har û hema hûcimê

Seyê feqîrî keno. Homayî rê şikir ke embezê ey, êno ey xelesneno ra.

Êdî na mesela ra dime Seyo feqîr vûrîno. Xo bi xo vano:

"Raverşîyayîşê nê demî, ne rastîye, ne wendiş û ne zî wayîrê pereyî bîyayîşî ser o yo".

Tîya de Seyê ma, maro ke pirenê xo vurneno xo keno teze, sey ey xo wijdan û duristîye ra, tewr mûhîm zî Seyî ra kuwno dûrî; bi zûran, bi dek û dolaban beno Zorab Efendî. Hem zî dilqê di merdiman de vejîno meydan. Hetê ra pesna hukmati dano, hetê ra kî pesna xelkî. Hetê hukmatî de peyva xelkî, hete xelkî de zî peyva hukmatî qesey keno. Her hetê ra zî êno heskerdene. Bi no hewa, Çiqas vanê hende rehet beno Zorab Efendî. Naye ra dime êdî çiqas ke pere kuwno ra dest û beno xurt hende zî beno vêşan. Tayêna, tayêna, tayêna wazeno... Rojê embazê xo ra perseno ke xeyalanê xo bi senî qeyde bîyaro ca. Embaz naye ser o perseno:

"Raver vaje, perê to estê?"

"Tayê estê".

"O wext, her çî tal o (bê mane yo). Labelê tayê meseleyê mûhîmî estê ke gere ti qebul bîkerê"

"Meseleyê çi?"

"Zûr, îxanete..."

Seyê ma ke beno "Zorab Efendî", êdî ne wijdan maneno ne durustîye ne ar ne zî namûs. Zulm û zorê patronanê ey ê verênan çik ê ke! Zorab Efendî weş bo. Ê, hetê Zorab Efendî de sey melekeyî, sey pêxemberî manenê. Seke nameyê Efeyê New Koyan beno Zübükzade, nameyê ey zî beno Zorab. Sey Zübükî mana nameyê ey zî manîdar a. O, zor, zulim, neheqîye, zalimîye, dîktatorîye, îxanet... Her çî xirabîye ke ênê aqilê şima, aye ano ra merdimi vîrî... Êdî seba menfaatê xo aya ke ano feqîr û fiqaran ser, Homa mîyaro dişmenî ser. Zorab, êdî seba menfaatê xo wendeyan ra nefret keno. Wexto ke Se bî, çitur ke hetê wendîş, dûristî û wijdanî de bî, nika zî ci ra hende dûrî yo û hende zî nefret keno. No derheq de hendê raver şono ke rojê tawo ke rastê di domananê wendekaran êno, seba ke domanî mîyanê xo de peyva ey qisey kenê, êno ke înan weşa weş buro. Înan ra yew vano:

"Zorab Efendî Homa yo."

Qeseyê ê bînî manidar ê.

"Zorab Efendî Homa nîyo. Xelkê ma yê feqîr û cahîlî ser o sey Homayî yo. Merdimê sey ey, mîyanê merdimanê wendekaran û biaqilan de nêşîne bibê şofor zî. Wexto ke xelkê ma wend bî biaqil ti a wext bivîne Homa kam o!"

Zorab Efendî êdî Seyo feqîr nîyo ke biaqil û wendekaran ra hes bi- kero. O êdî patron o. Coka o, nê domanan ra xof gêno, tey dejeno û nef¬ret keno. Seba ke wendiş û zanayebîyayîş, dûştê ey û menfaatanê ey de çîyode bi talûke yo.

Zübükzade Îbrêhîm zî o qeyde! Xelk, acizîya xo ra Zübük ra hevzê xo keno. Îhtîyacîya înan yew qehremenî rê esta, Zübükî mîyanê xo de ê bi xo virazenê. Coka guna tena gunaya Zübük û Zorabî nîya. Guna û xeta, înan ra zîyade ê merdiman a.

Kitabê Nesînî Zübük de, nasanê Zübükî ra yew, rojnamegero ke seba ropartajê Zübükî gêreno, ey ra vano:

"Biko, heşarê xo be, no Zübük to meşeleno".

O kî vano ke:

"Ma mi qey bigeleno? Ez ey ra çîyê nêwazena ke".

BasNûçe 27 Tirmeh - 02 Tebax 2015




Gültekin Aydeniz:

# Sihêtiya avê qontrola jiyanê ye

Kalê Badî

Li Bakurê Kurdistanê, mijara bendavan û bi taybetî jî bendava Farqînê cihê niqaşan e. Piştî ku PKK'ê ragihand ku êdî bendav armancen wê yên leşkerî ne û di van rojên dawî de şewitandina prêze, çiya û daristanan bû sedema bertekan me xwest em van mijaran bi berfirehî lêkolin. Hevberdevkê Meclîsa Ekolojiyê ya Amedê ya Tevgera Ekolojiyê ya Mezopotamyayê Gultekin Aydeniz, wêneyek pir xeternak ku divê bi lezgînî hawara wî bê qêrîn şanî me da. Aydeniz, di derbarê bandora neyênî ya bendavan a li ser çandinî û ajalkariyê, pêwendiya bendava Farqînê û derxistina gaza Shell, şewitandina çiya û daristanan û bêdengiya civakê de agahiyên pir sosret bi me re parve kir.

**Armanca sereke ya bendavan çi ye?**

Beriya em qala bendavan bikin, divê em hinekî li ser meseleya rewşa avê bisekinin. Weke tê zanîn Lijneya Avê ya Dinyayê, ji sê salan carekê kom dibe. Di van kombûnên xwe yên asaayî de 6 caran vê biryarê girtiye. Divê hemû çavkaniyên avê ên dinyayê ji bo bazirê bêne goncavtin. Bi vê mebestê hêzên kureyî me didin têgihîştin ku kî bibe xwediyê avê, di heman demê de dibe xwediyê hemû jiyanê jî û bi hêsanî dikarin hemû jiyanê kontrol bikin. Bi vê biryarê armanc ev e Ji ber ku Tirkiye jî perçeyek ji kapîtala navneteweyî ye, bi vê mebestê li Tirkiyeyê nêzîkî 1400 bendav hatina avakirin. Ji bilî van yên ku niha pêvajoya avakirina wan dom dike û yên ku di pêvajoya îhaleyê de ne jî hene. Li gor plansaziya dewletê, heta 2020'an we hejmara bendavên ku avakirina wan temam bûne bigihîje 2400 bendavan. Ev reqam didin xuyakirin ku wê hemû çem, kanî, rûbar û hemû çavkaniyên avî ji bo Santralên Hîdro Elektrîk(SHE) bêne terxandin. Û ev di heman demê de tê wateya guherîna ekolojiyê. Ger ku ev plansazî bigihîje armanca xwe wê populasyona ajalên avî û yên bejahiyê têk biçe. Di gotinê de hêsan xuya dike, lê belê ev yek wê texrîbateke mezin bi xwe re bîne. Yanî li ku derê bilindahiyeke 20-25 metre bê dîtin li wê derê bendavekî ava dikin. A xerabtir li hin deveran wê avê nerêjin rêgehên çeman, wê bi boriyên dêwasa ji bendavekî transferî bendaveke din bikin. Yanî di geliyekî de wê bi sedan bendav ava bikin. Wek nimûne; Di navbera Uzundere û Tortumê de ku nêzîkî 450 kîlometre dirêj e de 130 bendav ava dikin. Bendav dibe sedem ku wergehên nêzîkî çeman bêne valakirin. Heta 30-40 sal berêjî ji serê derbûna çemê Dîcleyê heta kendava Besrayê ku li wê derê ev çem dirije deryayê, hejmara wargeh û gundên ku li peravên çemê Dîcleyê bûn nêzîkî 1800'î bûn. Lê piştî ku polîtîkayên avê yên xerabker hatin pêkanîn bi hezaran wargeh û gundên peravê vî çemî hatin valakirin. Ev jî nîşan dide ku bendav çawa bandoreke neyînî li ser jiyanê dike.

## 'Li Kurdistan armanc ewlehî û binavkirina dîrokê ye'

**Li Kurdistan rewş çawa ye?**

Armanca bendavên Kurdistanê ji ya bendavên rojavayê Tirkiyeyê cudatir e. Li Kurdistanê armanca sereke ewlehî ye. Ji bo bendav û SHE'yên li Kurdistanê tê gotin ku armanc peydakirina enerjiya elektrîkê ye. Lê belê ev dereweke pir mezin e. Lewre SHE û bendavên ku avabûna wan temam bûye û yên ku di pêvajoya avabûnê de ne temam bibin jî enerjiya ku wê ji wan bê bidestxistin tenê ji sedî 10'ê elektrîka ku li Tirkiyeyê tê bikaranîn e. Ev dane bi me dide têgihîştin ku armanc ne hilberîna enerjiya elektrîkê ye û eger armanc ev be jî dewlet ahmeqiyê dike. Lê em baş dizanin ku dewlet ne ahmeq e. Tiştê herî balkêş jî ew e ku piştî pêvajoya çareseriyê destpê kir û vekişîna Gerîlla kete rojevê, hemû bendavên vê herêmê tafilê hatin îhalekirin û avakirina wan hate destpêkirin. Sedemê şewatên ku ev hefteyek e dom dike jî bi van plansaziyan re têkildar e. Sedemê şewitandina Çiyayê Cûdî daxwaza avakirina Santraleke Termîk e. Di vê mijarê de hevkariya mîlîtarîzmê û kapîtalan heye. Yanî di rastiyê de qada ku tê xwestin Santrala Termîk bê avakirin hate şewitandin. Di vê qada Çiyayê Cûdiyê wek bihûşteke piçûk a li Kurdistanê ye de her wiha rezervên mezin ên komirê jî hene. Geta ev xweşikiya bihûştî hebe nikarin Santraleke Termîk ava bikin. Divê pêşî ev bihûşt bê şewitandin da ku santral bê avakirin.

**'Dîroka kurd tê fetisandin'**

Avîkirina axên bejî ne qezencek e?

Ev mijar bi serê xwe mijareke grîng û wek pirsgirêkeke mezin dertê pêşberî me. Ji bo avîkirina axa bejî, divê berî her tiştî plansaziyeke mezin a binesaziya avîkirinê bê çêkirin û teknolojiyeke baş bê bikaranîn. Lewre axên bejî ku zêde bêne avdan ev av ziyaneke mezin dide axê û rêjeya şorbûna axê pir zêde dike û piştî demekê hemû mîneralên hilberîner ên wê axê dikuje û axê têk dibe. Îro tiştê ku li Deşta Herranê û hin deverên din tê dîtin jî ev bi xwe ye. Lê belê di vê mijarê



**Armanca bendavên Kurdistanê ji ya bendavên rojavayê Tirkiyeyê cudatir e. Li Kurdistanê armanca sereke ewlehî ye. Ji bo bendav û SHE'yên li Kurdistanê tê gotin ku armanc peydakirina enerjiya elektrîkê ye. Lê belê ev dereweke pir mezin e.**

de mebesteke veşartî heye, ev jî feraseta desthilatê ye. DAIŞ çawa li deverên wek Palmîra, Mûsil, Şengal ku dagir kiriye hemû mîrateyên çandî û dîrokî têk bibe, feraseta vê desthilatê jî bi vê mebestê hemû deverên ku pêwendiya kurdan û dîrokê li ser piyan dihêle di bin avê de difetisîne.Mebesta veşartî ew e ku di şexsê kurdan de hemû berhem û mîrateyên çandî, dîrokî û civakî di bin avê de têk bibe. Bendava Ilisu û binavkirina Heskîfê, bendava Farqînê û binaxkirina Geliyê Godernê, Bendavên Pasûr 1, Pasûr 2, Pasûr 3 û Pasûr 4. Dema mirov van herêman lêdikole, mirov bi hêsanî dibîne ku ev dever cihên dîrokî ku bîrdanka civakî ya kurdan in. Ev dever cihên hişmendiya dîroka kurd in.

**Ev rewş bedêleke mezin pêwîst dike û divê armanceke din a mezin hebe. Ne wisa ye?**

Ger em bên ser armanca mezin û sereke, armanca mezin û sereke tunekirina çandî, civakî, ekolojîk û dîrokî ye. Wek min got, dema mirov bala xwe dide deverên ku bendav lê têne avakirin cihên ku bi plansaziyeke mezin hatine destnîşankirin in. Hemû projeyên SHE û bendavan bi plansaziyeke navendî têne amadekirin. Li Enqereyê li ser maseyan rûdinên û di Google earth'ê de hesabên xwe dikin, bilindahî û nizmbûna deveran hesab dikin û bi îhaleyên nepenî ew pêşkêşî sermiyandarên nêzîkî xwe dikin. Hetta hin sermiyandarên ku wan îhaleyan bi gendelî distînin qet naçin li herêmên ku îhaleyên wan stendine nagerin, piştî ku îhaleyan distînin diçin ku li wan deverên ku îhaleyên wan stendine av tune, av çikimî ye. Nimûneyên wiha jî hene. Desthilatdarî bi van gendeliyan di heman demê de sermiyandariya xwe jî xurt dike. Tê xwestin ku çandeke nû ya îslamî ya ku desthilatdaran maqûl dîtiye bê avakirin. Li Amedê, li gellek cihên ku potansiyela oksîjena bajêr derdixe holê bi tapokirina lezgîn têne desteserkirin û tafilê li van cihan projeyên mizgeftên mezin ku pêwîstî bi wan tune ye têne amadekirin. Balkêş e ku di van projeyên mizgeftan de teqez di bin van mizgeftan de malbendên danûstendinê yên mezin jî hene. Heta, hin ji van projeyên mizgeftan paşê guherîn têne kirin û avakirina mizgeftan tê betalkirin û tenê malbendên danûstendinê yên mezin dimînin. Qada stadyûmê û Anıtparkê, qada wargeha Karayolları û bi kedeke mezin hatibe astengkirin jî peravên çemê Dîcleyê çend nimûne ne. Her wiha bi van bendavan tê xwestin ku çandiniya srûştî ya gundan bê tunekirin û hemû civak bibin dîlên bajaran. Yasaya ku hemû gundan wek taxan bi bajaran ve girê dide jî perçeyek ji vê armancê ye. Piştî demekê êdî wê yasayên ku ji gundiyan re çandinî û xwedîkirina ajalan qedexe dike jî bêne derxistin. Çawa ku şirketên îhaleyên bendavan distînin heta 49 salan mafê bi hemû şêweyî bikaranîna avê jî werdigirin û êdî wê gundiyek nikaribe ji ava wî çemî çandiniya xwe bike û avê bide ajalên xwek, wê çandiniya sirûştî jî bê qedexekirin û wê mafê çandiniyê jî radestî şirketan bibe.

## 'Bendava Farqînê pûçkirina Kurdistanê ye'

**Hûn bêtir li ser Bendava Farqînê disekinin. Çima?**

Bendava Farqînê projeyeke pir mezin û dêwasa ye û armanca avakirina wê tenê ewlehî, avadanî û hilberîna enerjiya elektrîkê nîne. Ger ku ev bendav temam bibe bi bilndahiya bedena xwe ya 175 metreyî, ew ê bibe bendava herî bilind a Ewropayê. Geliyê Godernê ji 8 şaristaniyan re malevanî kirî ye, navenda Merwaniyan bûye, ji bilî kurdan mîrateyên pêkhateyên cihê jî dihewîne. Her wiha ji bo Gerîlla cihekî pir stratejîk e û ger ku ev bendav bê temamkirin wê ev cihê stratejîk di bin avê de bimîne. Ger em bên ser armanca mezin a vê bendavê; Pêwendiya vê bendavê rasterast bi rezervên gaza Shell ve heye. Bendava Batmanê û ya Farqînê di nav hev de ne. Dema ku mirov di nexşeyê de li vê herêmê dinihêre, di çarçoveya Lice, Qulp û Hezroyê de ku çemên Sahûr û Pasûrê jî tê de ne, li ser hemû çemên vê herêmê projeyên SHE'ya têne birêvebirin. Bendavên Pasûr 1 û Pasûr 4 temam bûne û yên Pasûr 2 û Pasûr 3 di pêvajoya avakirinê de ne. Ev proje bi vê qadê ne sînorkirî ye. Bi vê qadê re her wiha beşek ji Dêrsimê, beşek ji Elezîzê, ji Kanîreşa Çewligê heta Amed û Batmanê, di vê çembera qerase de piştî projeya GAP'ê, projeya herî mezin a avîkirinê tê meşandin. Goya wê di vê qada ku di nav xwe de 2.5 milyon donim erdê çandiniyê dihewîne de projeyeke mezin a çandiniyê bê pêkanîn. Ji civakê re ev tê gotin. Lê belê em baş dizanin ku ev ne rast e

**Çima?**

Ez çima'yê bêjim: Ev qada mezin di bin axa xwe de potansiyeleke mezin a gaza Shell dihundurîne. Hemû av, çem û heta kaniyên vê qadê pêşî bi SHE'yan têne berhevkirin û di bendavên Farqîn û Batmanê de têne komkirin. Di rastiyê de di van bendavan de depoyeke mezin a avê tê plankirin. Di destpêkê de projeyeke wiha dêwasa nehatibû plankirin, piştî ku biryara mezinkirina vê projeyê hate qebûlkirin Santraleke enerjiyê ku wê dikaribe 180 MB enerjî hilberîne jî pê ve hate montekirin. Ev enerjî tenê dikare pêdiviya enerjiya Amedê bi serê xwe bibersivîne. Armanc ev e: Di vê qada ku min destnîşan kir de potansiyela herî mezin a gaza shell heye û rêjeya vê gazê 5 milyon sêçik metre ye. Her wiha em baş dizanin ku li hemû qadên ku gaza shell tê derxistin jiyana ser erdê û bin erdê têk diçe, lewre di derxistina vê gazê de490 hezar gazên kîmyewî û jahrî di bin erdê de li hemû rehên avê û axê belav dibe. Ji ber ku ev gaz, bi tazyîqa ava ku bi van gazên kîmyewî hatiye tevlîhevkirin li bin erdê tê pestokirin, her carê 20 hezar sêçik metre av tê bikaranîn. Her bîreke sondajê ya vê gazê, ji destpêkê heta dawiyê nêzîkî 1000 tankêr av dixwaze. Di vê qadê de nêzîkî 3500 bîrên sondajê tê plankirin. Êdî hûn 3500 bîrên sondajê bi 1000 tankêr avê lêkhev bixin. Ev rêjeyeke pir mezin a avê ye. Bila kesek derkebe û bersiva pirsa 'Wê ev av ji ku bê peydakirin?' bide min. Li vê qadê ji bilî bendavên Farqîn û Batmanê av tune ye. Ew ava ku pêdivî pê heye wê ji van bendavan bê peydakirin û ji niha ve tûnêla wê tê kolan. Tûnêla ku çend meh berê teqîn tê de çêbû û 12 karker birîndar bûn ew tûnêl e. Hun jî dizanin piştî wê teqînê ava Kaniya Navîn a ku ava vexwarinê ya Farqînê jê tê dabînkirin jî çikimî û niha Şaredariya Amedê bi tankêran ava vexwarinê dişîne Farqînê. Heta vê derê jî normal e û xeteriya mezin jî ev e: Bi wê ava ku 490 hezar gazên kîmyewî tê tevlîhevkirin û bi pestoyeke mezin di bin erdê de tê sondajkirin dibe sedema erdhejên 4.0'ê Her cara ku tê pestokirin ev erdhej pêk tê û em dizanin ku ev herêm nêzîkî xeta şkesta erdhejê bakurê Anatolyayê ye ku Liceyê ji ber wê, azarên mezin kêşa ye. Dema ku her bîreke sondajê erdhejeke di vê astê de pêk bîne ku dikare garantî bike ku wê ev hejîn nebin sedema erdhejeke mezin.

**Ew gazên kîmyewî ku bi avê re têne tevlîhevkirin û ji bin erdê re têne sondajkirin ziyanê nadin axê?**

Bêguman yek ji beşeke ziyanên van projeyên xerabker jî ew gazên kîmyewî ne. Gaza shel bi tazyîqa vê ava kîmyewî, şkandina zinaran tê derxistin. Piştî ku ev zinarên bin erdê têne hûrkirin, di bin axê de ritameke ku ji çamûra vê ava kîmyewî û xweliya van keviran çêdibe. Beriya ku gaz bê derxistin ev ritam tê derxistin û ev ritama ku 490 hezar gazên kîmyewî dihundurîne li vê deverê tê rijandin û ev ritam li cihên ku tê rijandin ji sedî sed hemû populasyonên zindî dikuje. Her wiha di kêliya sondaj û erdhejan de ev gazên kîmyewî têkilî rehên avê yên wê herêmê jî dibe û hemû avên herêmê bi gazên kîmyewî dibin jahrî û dibe sedema mirina hemû zindiyan. Ev xeteriyeke pir mezin e. Erê wê sermayedar sûd ji vê gazê werbigirin lê wê li herêmê jiyan biqede. Jixwe Tirkiye hedefa xwe ya 2020'an li ser vê qadê û li ser dahata petrola Başûrê Kurdistanê dimeşîne.



**Li dij hemû van polîtîkayan divê çi bêne kirin?**

Nêzîkî 30 sal in ku ev polîtîka têne meşandin û divê êdî civaka kurd li dij van polîtîkayên talanker û têkbir ku di bin siya tekoşîna polîtîk de tê piştguhkirin re jî dengê xwe bilind bike. Ji ber ku di nav civaka kurd û civaka rojavayê Tirkiyeyê de ji ber şer dijatiyeke polîtîk peyda bûye, ev rewş nahêle ku tekoşîna rojavayê Tirkiyeyê û ya Kurdistanê ya li dij talanê bigihîje hev û li ser pirsgirêkên hevpar hêzên xwe bikin yek. Lê divê li dij têkbirina çand, dîrok û ekolojiyê em pêwendiyên xwe bi hemû hêzên dinyayê yên ku li dij polîtîkayên bi vî rengî berxwe didin xurt bikin. Lewre Ekolojiya Kurdistanê di heman demê de ekolojiya Bolîvyayê ye, ya Tirkiyeyê ye û ya hemû dinyayê ye. Di vê mijarê de neheqiyeke mezin li Gerîlla jî tê kirin. Civaka me hîn bûye û çareserkirina hemû tiştî ji Gerîlla hêvî dike. Lê belê divê qet nebe di mijarên wiha de em wek civaka kurd xwedî li xwe derkebin û dengê xwe bilind bikin.

Bexda û Tehran

# Kemîna li dijî serxwebûnê

Hêmin Cemşîdî

Beriya êrîşên DAIŞ'ê yên li ser Kurdistanê, Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) amadekariya referandûma serxwebûnê dikir. Bi êrîşên DAIŞ'ê re Herêma Kurdistanê amadekariyên serxwebûnê dabû rawestandin û di heyama şer de hewl da ku krîza di navbera Hewlêr û Bexda'yê de jî bêne çareserkirin. Herçend Herêma Kurdistanê ji bo çareserkirina krîza Hewlêr û Bexda'yê deriyê çareseriyê vekiriî hişt jî hikûmeta navendî ya Bexda'yê mûçeya Herêma Kurdistanê neşand û bû sedem ku li Kurdistanê krîzeke darayî rû bide.

Li hêla din piştî derxistina DAIŞ'ê ya ji nav xaka Kurdistanê û tomarkirina serkeftînên mezin ên li hemberî DAIŞ'ê bûn hokar ku Herêma Kurdistanê di dîplomasiya cihanê de bê xuyakirin û di şerê hember DAIŞ'ê de ji hêla dewletan ve bê piştgirî kirin. Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî û Serokwezîrê Herêmê Kurdistanê Neçîrvan Barzanî di çerçoveya danûstendinên dîplomatîk de beşdarî gelek civînan bûn û weke nûnerên Kurdistanê hatin vexwendin û di wan civînan de piştgiriya "Kurdistana serbixwe" gihîşt lûtkeye herî berz. Li hêla din di çerçoveya serxwebûna Kurdistanê de Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî di gel şandeyekê serdana Emerîka û Ewrûpa'yê kir û li Hewlêrê jî digel nûnerên Emerîka û Ewrûpa'yê civiya. Olana dengên serxwebûna Kurdistanê nerazîbûn bi welatên cîranên Kurdistanê re çê kir û ketin nava hewldana û ji ser partiyên siyasiyên kurd stratejiyên xwe li ser Kurdistanê ferz dikin û dixwazin rê li ber wê yekê bigrin.

Tehlîlger û şîrovekarên siyasî balê dikşînîn ser geşedanên dawî yên li Herêma Kurdistanê û eşkere dikin ku pengavên li Kurdistanê rû didin pêngavên dewleteke serbixwe ne û Herêma Kurdistanê bi ragihandina "serxwebûna aborî" re proseya serxwebûna Kurdistanê dane destpêkirin. Her wiha di çerçoveya serxwebûna aboriyê de ji 1'ê Tîrmeha 2015'an heta niha Herêma Kurdistanê neft nedayê Şîrketa Netewî ya Iraqê (SOMO) û nefta xwe bi xwe difroşe.

Herçend serkeftinên ku li hemberî DAIŞ'ê hatine tomarkirin bilind bên nirxandin û di warê siyasî û aborî de aramî li Kurdistanê peyda bûbe û amadekariyên referandûmê dîsa dest pê bikin jî ameje bi wê yekê tê kirin ku Rejîma Îslamî ya Îranê ewê nerazîbûnê li hember serxwebûna Kurdistanê nîşan bide û ewê li hember serxwebûna Kurdistanê helwestekê nîşan bide. Akademîsyen û zanyarên siyasî li ser helwesta Îranê rawestiyan û ji BasNûçeyê re eşkere kirin ku Îran serxwebûna Herêma Kurdistanê ji bo xwe weke xetereyekê dizane û naxwaze kurdên li Rojhilat jî têkevin bin tesîra polîtîkayên Herêma Kurdistanê û hişmendiya neteweyî saz bibe.







## "Tehran piştevaniya Bexda'yê dike"

Pisporê IMPR Kaan Dilek bal kişand ser danûstendinên navbera Îran û Herêma Kurdistanê û da zanîn ku Herêma Kurdistanê serxwebûna aborî ragihihandiye û Îran dixwaze bi Kurdistanê re berjewendiyên hevpar saz bike û di firotina nefta Kurdistanê de cih bigre. Di berdewamiya axaftina xwe de Dilek amaje bi wê yekê jî kir ku herçend Îran bi Herêma Kurdistanê re bi nepenî be jî danûstendinên siyasî û aborî bike jî û nefta Kurdistanê bistîne jî deriyê xwe ji Bexda'yê re nagire. û eger Herêma Kurdistanê bibe serbixwe ewê peywendiyên tekûz ên siyasî û aborî bi Kurdistanê re saz neke û ew dê piştevaniya Hikûmeta Bexda'yê bikin.

"Îran li hember serxwebûnê ye"

Di berdewamiya axaftina xwe de Dilek da zanîn ku Îran naxwaze li Rojhilatê Kurdistanê kurd li hember wê dest bi raperîn û tezahûratan bikin, lewre ew naxwaze tesîra Rêveberiya Herêma Kurdistanê li ser kurdên Rojhilatê pêk were. Li hêla din Dilek li ser serxwebûna aborî ya Herêma Kurdistanê jî rawestiya û daxuyand ku Îran dixwaze nefta Kurdistanê bikire û ji deriyê sînor ê Hecî Umran re xeteke neftê bikşîne bo Îranê lê beriya her tiştî dixwaze Hewlêr û Bexda li hev bikin û Îran beyî Bexda'yê tev nagere. Kaan wiha berdewam kir; " Heta ku qeyrana Hewlêr û Bexda'yê çareser nebe ewê rêkeftin di navera Îran û Herêma Kurdistanê de saz nebe. Îran li hember perçbûna Iraqê ye û naxwaze Kurdistan ji Iraqê biqete."

## "Partiyên siyasî di bin tesîra Tehranê de ne"

Akademîsyenê Zanîngeha Yildirim Beyazit a Enqerê Dr. Bayram Sinkaya jî bal kişand ser polîtîkayên Îranê yên li Herêma Kurdistanê û da zanîn ku Îran gelekî dixwaze bi Kurdistanê re peywendiyên baş saz bike û di nava wê hewldanê de ye ku ji Deriyê Hecî Umran xeteke neftê di navbera Îran û Kurdistanê de saz bike û Îran di gel peywendiyên baş li hember serxwebûna Kurdistanê jî derdikeve û eşkere dike ku serxwebûna Kurdistanê ji bo wê xetere ye û ew dixwaze Hewlêr ji Bexda'yê neqete. Sinkaya amaje bi wê yekê jî kir ku Îran dixweze piyekî wê li Kurdistanê be û serxwebûna Herêma Kurdistanê berjewendiyên Îranê ji holê radike û ew li hember serxwebûna wê tevdigere û li ser partiyên siyasî yên kurd stratejiya xwe zal dike. Sinkaya bal kişand ser peymana Îranê û welatên NY'yê jî û wiha berdewam kir; "Tesîra peymanê ewê li ser pêywendiyên Herêma Kurdistanê û Îranê nebin. Îran hesabên xwe ji zûve dike. Eger Kurdistan serxwebûnê eşkere bike ewê pêywendî xirab bibin lê eger wisa berdewam bike ewê pêywendiyên herdû welatan jî wisa berdewam bikin."

## "Dema serxwebûnê hatiye"

Akademîsyen Dr. Kemal Suleymanî jî bal kişand ser polîtîkaya Îranê ya li ser Iraq û Herêma Kurdistanê û ragihand ku polîtîkaya Îran û Emerîka'yê ya li ser Iraq û Kurdistanê yek e û herdû welat jî dixwazin Iraq û Herêma Kurdistanê di bin kontola wan de bin û ew hukmî wan bikin. Suleymanî eşkere kir ku Îran li hember serxwebûna Kurdistanê rawestiyaye û Îran dixwaze rêveberiya Iraqê her tim di destê komeke şîeyên Iraqê de be û Kurdistan jî di bin emrê wan de be û beyî wan tevnegere. Suleymanî li ser hukmê Îranê yê li ser partiyên siyasî yên Başûrê Kurdistanê jî rawestiya û wiha got: "Îran li Rojhilata Navîn gelekî bi hêz e. Nebûna dewleteke kurd, nebûna Kurdistanê dibe sedem ku dagirkerên Kurdistanê partiyên siyasî li hember destfkeftiyên kurdan bikarbînin. Ya ku Îran li Herêma Kurdistanê jî dike ev e. Hewceye kurd li destkeftiyên xwe xwedî derkevin. Konaxa Kurdistaneke serbixwe hatiye û divê hemû partiyên siyasî yên kurd li wê xwedî derkevin."



Kurdên Anatoliya Navîn

# Dîroka bi hesreta Kurdistanê dagirtî!

Siwar Bedirxan

Li gor lêkolîn û serçaviyên li ber destan kurdên Anatolya'ya Navîn di sedsala 15'an de ji welatê xwe ji Kurdistanê ber bi Anatolya'ya Navîn ve hatine sirgûnkirin. Her wiha sirguniya kurdên Anatolya'ya Navîn ji destpêka sedsala 15'an heta damezirandina Komara Tirkiye'yê berdewam bûye û zêdetirî 300 hezar kurd li Anatolya'ya Navîn hatine bicihkirin û bûne niştecihên Anatolya'yê. Kurd li bajar û navçeyên Konya, Enqere, Kırşehir, Aksaray, Çankırı, Çorum, Tokat û gelek bajarên din ên Anatolya'yê niştecih in wan çand û kultura xwe parastiye. Kurdên Anatolya'ya Navîn her çend ji Kurdistanê hatibin sirgûnkirin û desthilatdarên serdemê hewldabin ku ew bêne xilandin û dev ji kultura xwe berdin jî ew bi îradeyeke mezin li çand, ziman, keleporê û nirxên Kurdistanê xwedî derketine û her guhê wan li ser Kurdistanê bûye. Wan her karesata li ser xelkê kurd ê Kurdistanê li ser xwe hesibandine û kêfxweşiya wan jî weke kêfxweşiya xwe eşkere kirine. Li hêla din beşdarî berxwedana azadiya Kurdistanê bûne û dilê wan her li Kurdistanê bûye û hema ji bo rojekê be jî dixwazin werin şûnwarên pîr û kalên xwe bibînin.

## Çûna ber bî Kurdistanê ve

Kurdên Anatolya'ya Navîn beşdarî helmetên berxwedana Kurdistanê bûne û Kurdistan weke landika xwe eşkere kirine. Di gel sirgûnî û mişextiya bi salan zanyar û xwendayên kurdên Anatolya'ya Navîn li gel pirsên "Em ji kîjan bajarî ne? Navê eşîra me çi ye? Pismamên me gelo niha li ku ne? Berê xwe didin welatên dê û bavên xwe û li bersivên van pirsan digerin û dixwazin birîna di dilê wan de vebûye bi hembêzkirina Kurdistaniyên li Bakur û dîtîna cih û warên xwe bikewînîn. Taner Şahîn û Mustafa Aktaşê ji Gundê Kesikkoprü ya Balaya Enqerê ne jî dane dû kok û rehên neteweya xwe û serborî û çîroka xwe ji BasNûçeyê re eşkere kirin. Taner Şahin, ragihand ku dema ew li Enqerê xwendekar bû wî kurdên Bakurê Kurdistanê naskirine û fam kiriye ku ew ji Bakurê Kurdistanê hatine sirgûnkirin û li Anatoliyê hatine bicihkirin û herçend ew bi pişavtinê rû bi rû jî mabin wan dev ji nasnameya xwe bernedaye. Aktaş da zanîn ku dema wî serdana bajarê Rihayê kiriye ketiye rewşeke hestbar û ji xembariyê peyv nehatine ser lêvên wî û lal bûye.

## Zilma kûdetaya leşkerî

Di berdewamiya axaftina xwe de Şahin da zanîn ku hesta niştimanperweriyê di salên 1970'yî de bi wî re peyda bûye û di wan salan de li gel ciwanên kurd li hev kom dibûn û wan ji bo çarenûsa welat beşdarî xwepêşandan û civînan dibûn. Şahin wiha berdewam kir: "Di dema me de DDKDO hebû. Em beşdarî civînên wan dibûn. Kurdan li Enqerê'yê konsert lidardixistin em diçûn wan konsertan. Me dizanî ku em hatine sirgûnkirin û li welatê dê û bavê me zilm heye. Nedibû em bêdengbûna û me tu tişt nekira." Şahin amaje bi wê yekê jî kir ku ew di demsala zivistanê de li zanîngehê çalak bûye û di demsala havînê de jî diçûye gund û wî stran û kerestеyên kurdên Anatolya Navîn berhev dikirin û wî stranên gelek dengbêjên kurdên Anatolya'ya Navîn berhev kiribûn û di dema kûdetaya 80'yî de arşîva wî wenda bûye. Şahin wiha domand; "Ez li bajêrbûm. Ez hatim girtin. Bavê min jî wê demê radibe arşîva min vedişêre. Bi dû re lê digere nabîne. Di destê min de gelek kasetên dengbêjan hebûn."

## "Ziman nasaname ye"

Taner Şahin bal kişand ser rewşa giştî ya li her çar parçeyên Kurdistanê jî û eşkere kir ku ew ji destkeftiyên li Başûrê Kurdistanê gelekî kêfxweş in û hêvî dikin ku Herêma Kurdistanê serbixwe bibe û li Rojavayê Kurdistanê jî aramî pêk were. Şahin her wiha daxuyand ku ew jî eşîra Ezika ya Sirûcê û Kobanê ne û di encama lêkolînan de ew gihiştiye wê encamê ku pismamên wî niha li Kobanê li hember DAIŞ'ê di berxwedana Kurdistanê de cîh digirin. Şahin amaje bi wê yekê jî kir ku herçend dagirkerên Kurdistanê xwestibe wan ji koka wan bike jî wan dev ji kurdbûna xwe û netewa xwe bernedaye û nasnameya netewî ew li ser piya hiştine.

## Hesreta bavkalan

Her wiha Mustafa Aktaşê ji Gundê Kesiköprüya Bala ya Enqere'yê jî ragihand ku bav û kalên wî piştî Cenga Çaldiranê ji navçeya Sêwrega Rihayê hatine sirgûnkirin û li Balayê bicîh bûne û bavkalanê wan her tim ji wan re eşkere kiriye ku Anatolya Navîn ji wan re nabe war û bera berê wan her tim li Kurdistanê be û rojekê be jî vegerin cih û warê xwe û li wir bijîn. Aktaş her wiha da zanîn ku wî gotina bavkalanê xwe bi cîh aniye û ew di zivistana 2015'an de çûye Sêwregê. Aktaş behsa serdana xwe ya Bakurê Kurdistanê jî kir û wiha domand; "Bavkalan her tim digotin; 'herin bibînin û nas bikin. Cîh û warê me ku der e.' Ez rabûm û çûm. Min merivên xwe dîtin min xelkê me yê kurd dît. Hesteke cuda bi min re çê bû. Gotin nedihatin ser lêva min. Min xewna pîrên me bi cih anî. Ez çûm welat min hesreta di dile xwe derxist."

## "Me jî bibînin!"

Mustafa Aktaş di berdewamiya axaftina xwe de amaje bi wê yekê jî kir ku wan pişaftin û polîtîkayên li ser xwe tu carî qebûl nekirine û wan her tim hewl daye ku çand û kultura xwe biparêzin. Aktaş bal kişand ser giringiya ziman jî û wiha berdewam kir: "Ziman perçeyek e ji nasnameya me. Eger zimanê me nebe wateya nasnameya me, kurdbûna me tuneye. Em bi ziman kurd in. Ez niha bavikên xwe dikolim. Em gihîştin şecereya xwe. Lê eger ziman nebe tu çi bikî jî bê wate ye." Li hêla din Aktaş daxuyand ku divê partiyên siyasî yên kurd wan ji bîr nekin û bizanibin ku li Anatolya Navîn jî kurd hene û daxwaziyên wan jî bibînin û ji bo wan polîtîkayekê durist bikin. Aktaş her wiha ragihand ku divê nûnerên siyasî dema doza perwerdeya siyasî kirin divê wan jî bînin rojevê lewre ew li Anatolyê bi tenê ne û divê ew jî zimanê xwe biparêzin. Aktaş axaftina xwe wiha bi dawî kir: " Hesta me ya neteweyî tim hebûye. Lê nûnerên siyasî yên kurd divê me jî bibînin dema behsa perwerdeya zimanê dayikê kirin bila me jî bibînin. Bila me bi tenê nehêlin."





**Kurd li bajar û navçeyên Konya, Enqere, Kırşehir, Aksaray, Çankırı, Çorum, Tokat û gelek bajarên din ên Anatolya'yê niştecih in wan çand û kultura xwe parastiye.**



# Peytexta ezdatiyê Şêxan û Laleşa Nûranî



**Şêxanî bi zarava kurmancî bi devoka bahdînî diaxifin. Şêxan ku her nawenda mîrgeha êzdiyan bûye, dîroka wê heta sala 1236an dirêj dibe. Heta sedsala 12an navê mîrnîşîna ezdiyan, Mîrgeha Dasinyan bûye.**

**Welat Baz**

Warê şêxan, peytexta êzdiyan, pirozgeha Dasinyan bajarê Şêxan e yek ji qezayên Dihokê ye.

Şêxan di nav paralelên 36 û 38ên Bakûr û merîdyenê 45 û 23ê Rojhilat de cîh digre. Bajêr ji bakûr ve cîranê Dihokê û ji başûr ve jî cîranê Mûsilê ye. Şêniya nişteciyên Bajarê Şêxan ji 50 hezarî zêdetir e.

Bêtirên niştecihan bajêr bawermendên Ola êzdatiyê ne. Herêma Şêxan cî û bingeha peydabûna Ezîdiya ye û di dîroka bawermendên vê olê de rolekî xuyayî û bilind listiye.

Beşek ji niştecihên bajêr ji kurdên Musluman in.

Şêxanî bi zarava kurmancî bi devoka bahdînî diaxifin.

Şêxan ku her nawenda mîrgeha êzdiyan bûye, dîroka wê heta sala 1236an dirêj dibe. Heta sedsala 12an navê mîrnîşîna ezdiyan, Mîrgeha Dasinyan bûye.

Paytexta vê mîrnîşiniyê di demên pêşîn de Dihok bûye ku hingê wek 'Dihoka Dasinya' hatiye binavkirin. Pi□ştî hilweş□în û kavlibûna Mîrnîşina Dasiniyan, Mîrgeha Şêxan peyda bûye. Paytexta wê gundê li Baadrê bûye.

Sînorên Mîrgeha Şêxan, ji çemê Zêya Mezin û heta Çemê Xabûr û devera Surçiya û ji wir jî dihîşt heta Herîr û Welatê Şêxan ya niha û çiyayê Meqlûb û devera Silêvaniyê û heta Çemê Diclê yanî Ava Mezin û bajarê Dihokê.

Mîrgeha Şêxanê rolekî berbiçav û kariger di serpêhatî û jiyana siyasî û dînî ya devera dorûber de leyistiye.

Îro li Şêxanê civaka êzdî jiyaneke otonom dijî. Di karên olî û îdarî de Şêxan ji alî êzdiyan ve tê birevebirin. Ji bo pêşxistina çand û olê gelek sazî hatine damezrandin. Yek ji van saziyan Bingeha Laleşê ye. Cigirê Serokê Koma Rewşinbîrî Qadir Selîm Şemo di derbarê damezrandina vê saziyê de van agahiyan dide.

Bingeha Laleş li ser xaka êzdîxanê de gelek şaxan jî vekiriye û çendîn rojname û gowar, kûrsên fêrbûna ziman û xwendin û nivîsandinê jî têde gelek çalakiyan dike.

## Şêx Adî û Êzdatî

Şêx Adî û birazyê wî Şêx Hesen ku ji rêvebirên mirnîşîna Şêxanê bûne, nav û dengekî mezin li Kurdistanê dane. Şêx Adî di navbera salên 1073an û 1078an li Lubnanê hatiye dinê. Bapîrên wî ji Kurdên Hekkarê ne. Ew di sala 1111an de li Laleşê bi cîh bûye. Di demên pêşîn de wek mutewasifekî Musluman e. Şêx Adî wek Şêxulam, yanê 'şêxê hemû milletan' dihat qebulkirin.

Biraziyê wî, Şêx Hesen wek zana û filozofekî bijarte dihat nasîn ku xwediyê Kitêba Cilwe û çendîn kitêb û nivisarên din e. Şêx Hesen nav û dengekî mezin peyda kiribû û xelkekî zor lê derdora xwe kom kiribû. Mîrgeha wî esasê dewletekî bû. Li gor hin nivisarên; 'Ger doza Şêx Hesen serketiba, wê nexşeya Îslamê jî gûhariba.'

Ji ber wê tirsê Waliyê Mûsilê Bedredîn Lûlû ji tirsa vê yekê êriş kir ser Mirgeha Şêxan; Di sala 1246an de, di encama şerên xwînî de Şêx Hesen tê girtin û li zindana Musilê tê xeniqandin. Di êrişa duyêm de, Bedredîn Lûlû di sala 1254an de digije Laleşê û gora Şêx Adî disotînê. Herwiha Mirnîşînên Kurdên Musluman û Împaratorên Osmanî jî gelek car êrişê ser Mîrgeha Şêxan kirine.

## Rabirdûya xwînî ya êzdiyan

Di çerxa şanzdehan de Mîrgeha Şêxan dikeve bin destê Mîr Hesen. Mîr Hesen ku di sala 1520an de nêzî Osmaniyan dibe, wek waliyê bajêrê Musilê tê tayînkirin û kûrê wî Hisên Begê dibe hakimê bajêr. Mîr Hesen Beg di sala 1534an de diçe ser dilovaniya xwe. Piştî serdemê Şêx Hesen kûrê Şêx Adî yê dûyêm û Mîr Şêx Şerefdîn tê.

Mîrê herî bi navûdeng ku navê wî di çawkaniyên dîrokî de hatiye ziman, Hisên Beg e. Dema Siltan Silêmanê Qanûnî ji Tebrîzê vedigere û êzdîn Şêrê Mîrê Mîrgeha Hewlêrê dixeniqîne, ji dêlve wî ve Mîr Hisên Beg wek Mîrê Hewlêr, Soran, Musil û hemû Bahdînanê tayîn dike. Di vê serdemî de nav û dengê Êzidiyan û dewra wan li Şêxan, Mûsil, Hewlêr, Soran û hemû Behdînan bilind dibe.

Ji sala 1520an heta 1566an Mîrgeha Heleb û Şingalê jî di bin destê Mîr êzdîn kûrê Yusif Kurdî de bu. Ev Mîr, ji binemala Mîr Şerfedîn ji mala Şêx Hesenê Adanî bu.

Bi xurtbûna Mîrnîşina êzdiyan, Dewleta Osmanî ket gumanan û mîrên Musluman li dijî wan xist tevgerê. Piştî vê yekê mîr û serekeşîrên heremê yên Musluman li dijî Mîrê êzdî bûn yek û êrişê ser Hewlerê kirin. Di encama şer de Mîr Hisên ji neçarî ji heremê reviya. Siltan Silêmanê Osmanî, Hisên Beg bir Îstenbolê û li wî li wê derê li sêdarê da.

Piştî kuştina Mîr Hisên Beg, Êzdiyan beranberî Dewleta Osmanî şer kirin. Li ser vê yekê Osmaniyan bi devê Miftiyê Dewletê Abu al-Siud Emadî fermana qirkirina Êzidiya derxistin. Piştî vê fermanê rojên zêrîn yên êzdiyan reş bûn.

Piştî kuştina Hisên Beg, Dewleta Osmanî Wilayetên Mûsil û Hewlêrê di sala dan destê Mîrê Botan Elî Sidîq Beg kû ew jî bi esil Êzidî bû. Di sala 1534an de Mîr Hesenê kûrê Mîr Sêvdînê, Mîrê Amêdiyê, ku di bin siwana Dewleta Sefewî de bû bi alîkariya wan êrişê Dihoka Dasiniya kir û Mîrgeha Şêxan û derdorê xist bin destên xwe.

Di encama van zilm û zoran de di lîteratora êzdiyan de mesela '72 ferman' derketiye holê ku ew dîroka xwe wek rêzefermanan dinirxînin. Babaşêxê êzdiyan di derbarê vê meselê de wiha diaxife.

Di çerxa 17an de, Mîrê Êzidî Mîrzayê kûrê Mîr Hesen li dijî Sefewiyan bi Osmaniyan re hevkarî kir. Mîrza bi Mirad Xanê Osmanî re dostanî danîbû. Wî Gundê Başîkê kiribû melbenda Mîrgeha xwe. Dewleta Osmanî Mîrza wek Serlêşkerê Behdînanê tayîn kiribûn. Mirad Xan lêşkerekî mezin bo wilayeta Kurdistanê amade kir ku, pirraniya wan Êzidî bûn.

Begên Kurd yên demê yên wek Xan Ahmedê Mîrê Şarezûr û Erdelanê tarefdarê Dewleta Sefewî bûn. Ahmed Xan di sala 1623an de beşek mezin ji Kurdistanê xistibû bin destê xwe û êrişê devera Êzidiyan dikir. Di şerê sala 1639an Mîrza tevî Artêşa Osmanî ajot ser Bexdayê û di şer de serlêşkerê Sefewiyan kûşt.

Siltan Mirad di sala 1650an de ew kir paşayê Wilayeta Mûsilê. Mîrze salekî paşatiya Mûsilê kir. Di dema wî de li herêmê avedanî, çandinî û hêminî pêşket.





Kelayekî li ser rûbarê Dijle ava kir kû heta niha şûnewarên wê bi navê Baştabiya mane.

Têkiliyên Mîrze li gel Mîrên Kurd, bi taybet Mîrê Amêdiyê baş bûn. Nav û dengê wî belav bû. Ji ber wê yekê Osmanî jê tirsiyan û jê daxwaz kirin ew here Îstenbolê. Mîrza Beg li Îstenbolê debar nekir. Bi dizî, berê xwe da Êzîdxanê. Lê di rê de ji alî Tirkan ve hat kuştin.

Piştî vê serpêhatiyê dîsa di navbera Êzidiyan û Dewleta Osmanî de şer çêbûn. Mîrê Êzidiya yê nû, Emadedîn Hekkarî tevî 6 hezar şerwan êriş bir ser Wezîr Melik Paşa û devera Berwarî Bala û Kela Dûrî jê stend. Dewleta Osmanî bi lêşkerekî mezin û bi alîkariya mîrên heremê, êrişa Êzidiyan şikandin.

Di dema Elî Begê kûrê Hesen Begê de di sala 1831an de fermana herî mezin bi destê Mîr Mehemedê Rewandûzê tê ser Êzidiyan. Ji bilî kuştina çend hezar kesan, 100 hezar kes jî, tên dîl girtin. Hisên Beg kûrê Elî Beg bi zîrekî xwe gihandibû Siltan Ebdilhemîdê Osmanî. Wê demê li heremê li dijî Osmaniyan hin serhildanên Kurdan peyda bûbûn. Osmaniyan hizir dikir ku destê Hisên Begê di van bûyeran de heye û ew jî holê rakirin.

Di sala 1892an de di dema Mirza Beg de, Ferîk Wehbî Paşa yê Osmanî êrişê Şingalê kir. Mîrze beg ji tirsa bû Musluman. Herçend poşman bû jî, ji çavê Êzidiyan ket û birayê wî Elî Beg hat ser hukum. Mîrza Beg li gel jina xwe Meyan Xatun bo 3 salan çûbû sirgûnê. Piştî ku vegeriya herçend mîriyatiya domand jî di vê pêvajoyê de rêvebirî di destê Meyan Xatunê de bû. Ew ji sala 1913an heta 1957an wek jineke navdar, ket nav dîroka jinên hûkûdarên Kurd.

Mîrza Beg di sala 1913an de hat kûştin. Paşe Seîd Begê kûrê Elî Beg hat ser textê êzdiyan. Niha jî kurê Seîd Beg Tehsîn Beg Mîrê Ezdiyên Kurdistanê ye.



**Laleş a Nûranî**

Paristgeha pîroz, cîhê heca êzdiyan Laleşa Nûranî ji mêj ve mulkê êzdiyan e. Şêx Adî yê pîrozê êzdiyan jî li vî bajarokî veşartiye.

Di qewlekî êzdiyan de bi vî awayî behsa Laleşê tê kirin.

'Erd mabû bihîtî
Hidûdekî xweditî,
Got: "Ezîzê min, erd bê wê surê natebitî."
Badî çil salî bi hijmare
Erdê bi xwe re negirt hişare
Heya Laliş di nav de nehate xware
Laliş ku dihate
Li erdê şin dibû nebate
Pê dizanin çiqas kinyate"

Laleş yek ji deverên kevnare yê Kurdistanê ye ku bûye peytexteke olî û siyasî. Li gor kitabeyên ku bidest ketine, diyar bûye ku herem di dema Mîhrperestan de yanê ji roja me herî kêm 2500 sal berê jî şên bûye û nawendeke olî bûye.

Taswîrên Şêşimsê ser dîwarê Laleşê diyariyeke wan deman e. Laleş di dema Med û Sasaniyan de yek ji nawenda Bahdînî yanê Zerdeştiyan bûye û piştî ku derbasî Romayiyan jî bûye ji bo Xristiyanan bûye devereke olî ya giring.

Bi vî awayî rêçên bawermendên van şaristaniyan li Laleşê hatine kolan. Piştî hatina Şêx Adî ya heremê û bajêr û dever bûye nawenda ola êzdiyan.

Lalîş gotineke Kurdî ye û ji dû pêyvan pêk tê: 'La' tê wate ya 'cî' an jî 'li cem.' Peyva din 'laş" e. Herdû peyv bihevre tên wate ya "cîhê laş". Yanê cîhê ku laşê Şêx Adî lê ye.

Li aliyê din jiber ku Laleş cîhekî pîroze, çi mirovê dema derbasî wê derê bibe divê bêdeng be. Wek miroveki 'lal û hiş bûyî.'

Di dema serdana me ya Laleşê de em dibin şahidê Cejna Ezî. Ev cejn yek ji girîngitirin îdên Ezdiya ye. Di ola êzdatiyê de ji ber naverok û mîtolojiya dewlemend gelek cejn hene. Cejn û pîrozbahiyên êzdiyan di warê civakî de rola nêzîkkirin, bihevrebûn û xurtkirina piştgiriya bawermendan jî dilîze. Sofiyekî êzdî behsa vê yekê dike.



**Cejnên êzdiyan**

Di dema Cejna Ezî de yek ji îbadeta bawermendan tewafkirina mekan û pîrozgehên olî ye. Ji ber vê yekê heca Laleşê yek ji ferzên bawermendên êzdî ye. Sofiyê dergevanê Laleşê behsa girîngiya tewafa paristgehên pîroz dike.

Dema derbasbûna nav Laleşê kevirê ber derî ji bo rêzgirtinê tê maç kirin.

Herwiha nobedarê ber deriyê vê mekana pîroz jî yek ji sofiyên Lalêşê ye û destên wî jî tê maç kirin.

Yek ji adetên êzdiyan, ku derbasî hindirê paristgehê dibin, jin jî bo xatirên cejnê dilîlînin.

Li geliyê Laleşê li nêzî paristgehê dû avên zelal ku bi navên Kaniya Spî û Ava Zemzem tên naskirin diherikin. Heciyên ku tên Laleşê ji vê avê veduxun û bixwe re dibin.

Dema cejnê de ji gelek deverên cîhanê êzdî tên serdana meqanên pîroz yên Laleşê.

Li gor baweriyan divê kesî derbasî nav Laleşê bibe pêlavên xwe derxe. Ji ber vê yekê Ezdiyên cejndar hemû li kolanan pêxwas digerin.

Pîrozbahiyên cejnê hefteyekî dajo. Di vê pêvajoyê de bi şevê ji komên bawermend digijin hevdû û şevên tarî bi qendîl û mûmikan ronî dikin.

Di dema pîrozbahiyan de gelek îbadetên olî tên kirin. Ji ber ku Laleş hemû bi mekan û ziyaretên pîroz hatiye honandin, bawermendên ku serdana vê derê dikin, hemû deverên pîroz tewaf dikin. Dergevanê Laleşê behsa cîhên tewafê dike.

Hin malbat zarokên xwe bi ava zemzemê pîroz dikin.Hin kes bi vexwarina ava Kaniya Spî, beden û giyana xwe xurt dikin.

Kesên derbasî eywana Mekana Şêx Adî dibin, nişane û qubên derdorê maç dikin û li dora wan digerin.

Di hindirê Laleşê de jî bi taybetî keç û xortên ku duxwazin bigijin miradê xwe, hin ritûelên pîroz bicîh tînin. Li gor yek ji van ritûelan dibê çarikeke ji mekanê pîroz 3 caran davêjin ser stûnekî.

Dîsa stûneki hindirê avahiyê ji alî xortan ve tên hemêzkirin. Ev yek jî sê caran tê dûbare kirin.

Di nav Laleşê de çend darên miraza jî hene. Kesên ku benikên ser vê darê vekin û careke din girêk bidin, dûa û senayana dikin, da ku bigijin mirazên xwe.

Heta rûxîna rejîma Baas, Ezdiyên dervayê herema Laleşê nikaribûn heca xwe bikrana û bihatana serdana Laleşê. Di salên dawîn de ku gelek êzdî êdî bo hec û serdanê tên vê mekana pîroz, pêwîstî bi saziyên tûrîstîk û civakî peyda bûye. Dergevanê Laleşê di derbarê vê meselê de wiha diaxife.

Li aliyê din di nav mêvanên Laleşê de ne tenê êzdî ji gelek deverên cîhanê Kurd û biyanî jî hene. Bi taybetî hersal gelek rojnamevan, lêkolîner, baldar û oldar wek tûrîst tên serdana Laleşê.

# Deşt û çiya tên şewitandin

**Daneya balkêş ew e ku di kêliya van şewatan de Gerînendehiyên Herêmî yên Daristanan ku erka wan a serekî ew e ku di rewşên şewatê de mudaxele bikin, xwe nelivandin û ev agir ji alî şaredariyan ve hatin temartin.**

Lîsa Deysem

Li Bakurê Kurdistanê şewata çiya, daristan û pirêzeyan ku hefteya çûyî di bin siya bûyera teqîna li Pirsûsê û geşedanên dû wê de zêde nehatin lêkolîn, bûn cihê gumanan. Lewre ev şewatên ku li Çiyayê Cûdî, navçeyên Amedê Lice, Pasûr, Farqîn, Bismil, navçeya Batmanê Kercewsê, navçeya Xozatê ya Dêrsimê û gellek deverên din, di heman demê de pêk hatın diyar dikin ku bi hev re têkildar in. Daneyeke din a balkêş jî ew e ku di kêliya van şewatan de Gerînendehiyên Herêmî yên Daristanan ku erka wan a serekî ew e ku di rewşên şewatê de mudaxele bikin, xwe nelivandin û ev agir ji alî şaredariyan ve hatin temartin. Tê gotin ku şewatên li Çiyayê Cûdî û Xozatê ji alî leşkeran ve hatiye pêkanîn. Her wiha tê angaştin ku şewata li Silopiyê jî ji alî Koma CİNER'ê bi mebesta peydakirina rêjiyên nû hatiye derxistin.

## Egeriya hevkariya hevkariya leşker û kapîtalê

Parlamanê Şirnexê yê HDP'ê Faysal Sarıyıldız ku mijarê ji nêz ve dişopîne li ser angaşta ku ji hêla welatî û hawîrparêzan ve hatibû kirin ku dibêje; dibe ku CİNER, ji bo peydakirina qadên nû ên bo derxistina rêjiyan ew qad şewitandibe ji BasNûçê'yê re axivî û destnîşan kir ku, Koma CİNER'ê tevî uniteyên xwe yên nû yek ji santralên herî mezin a termîk a birêjî ye û dibe ku rêjiyên wan têrî tevahiya unîteyên nû nake û bi hevkariya kapîtal û leşkeran ev der hatibe şewitandin. Sarıyıldız li ser rola leşkeran a di şewatan de jî wiha axivî: "Li gorî çavderiyên me şewat, teqez ji hêla leşkeran ve hat derxistin. Welatiyekî suryanî çavdêryên xwe bi me re parve kir û got ku leşkeran ev şewat derxistin." Sarıyıldız destnîşan kir ku gundiyan, navê fermandar dane û qala helwesta leşkeran kirine û gotine ku fermandar ji wan re gotiye heta ku li van çiyayan gerîlayek bimîne wê ev der bêne şewitandin, ewê nehêlin yek ji gundiyan vegere gundê xwe û gundan ji nû ve ava bike. Sarıyıldız got ku dewletê, goya yasaya vegerînê derxistiye, lê fermandar feyza xwe ji polîtikayên AKP'ê digirin û bi awayekî xirab nêzîkî gundiyan dibin. Sarıyıldız da zanîn ku parlamenên wan Aycan İrmez û Leyla Birlik ji walîtiyê daxwaza firokeyên agirkuj kirine, lê belê firoke nehatiye şandin. Sarıyıldız got: "Hestiyariya ku li rojavayê Tirkiyeyê nîşan didin li Kurdistanê nîşan nadin. Di derbarê mijarê de me pirsname pêşkêşî Parlamentê kir ku angaştên li ser CİNER'ê û leşkeran bêne lêkolîn. Lê belê dewlet li ser sûc hatiye zeftkirin û AKP weke rûtînî, karê yasadanê bi cih nehaniye û pirsên me nebersivandine." Sarıyıldız li ser kêmasiyên şaredariyan jîwisa axivî: "Li tu dera cîhanê ev pirsgirêk ne di bin berpirsiyariya şaredariyan de ye. Lê gava cih Kurdistan be divê saziyên me van derfetan biafirînin. Aniha şaredariyên me kirîna arasozekê xistiye rojeva xwe. Her çi qas ev yek ji bo şarêdariyên Kurdistanê giran be jî ew ê techîzatên xwe zêde bikin."

## Gundê asuriyan bû û hatibû valakirin

Hevserokê Şaredariya Silopya'yê Seyfettin Aydemir jî di derbarê gundê ku şewat lê destpê kir de ji BasNûçe'yê re axivî. Aydemir destnîşan kir ku Harbûlê gundê asuriyan bûye û di dema şerê de hatiye valakirin lê digel pêvajoya aştiyê gundiyan gundê xwe ji nû ve ava kirine û nêzîkî 4000-5000 darên fêkiyan çînandibûne, bes leşker ji vê yekê aciz bûne û nedixwestine mirov li herêmê bijîn lewre bawerî ev bûye ku gerîla vê derê bo çûyîn û hatinê, bo xwespartinê bi kar tînin, dixwestine ku gund bişewite û kes tê de nejî. Her wiha Aydemir destnîşan kir ku welatî jî ew jî teqez dizanin ji ber topên hawanê ev şewat hatiye destpêkirin û dewletê bi zanebûnî venemirandiye lewre piştî vê şewata mezin di 21'ê tîrmehê de teqîneke bi sedemeke nediyar li amûra CİNER'ê pêk hatişe û şewat derketiye û Gerînendetiya Daristanan a Bajêr ku nehatibû şewata mezin, bi alikariya welatiyan ev şewat vemirandine. Seyfettin Aydemir bale kişand ku Tabura Sînorê a Çalışkanê bi şev saet 11-12'an de li pişt gundên Silip û Harbûlê 2 topên hawanê avêtine û leşker jî vê yekê qebûl dikin û şewatê teqez piştî vê destpêkiriye. Aydemir diyar kir ku leşkeran gotine qad ji hêla wan ve bi kamerayên termal hatiye şopandin û gerîla ber bi taburê ve hatine lê welatiyên herêmê û asûriyên ku ji Ewropa'yê hatine ev yek napeyitînin û dibêjin kes li wir tune bûye.

## Şewata Prêzeyan

Li Amedê, li gundê Derkama Licê û gundê Barina Pasûrê jî şewatên li pey hev hatin destpêkir. Digel qada ku dikevin bin berpirsiyariya Gerînentetiya Daristanan a Bajêr, Şaredariya Amedê şewat vemirandin. Serokê Daîreya Agirkujiyê İ.Hakkı Bilici diyar kir ku sedema van şewatan ev e ku cotkar, piştî debra xwe diçinin, zeviyên xwe dişewitînin û ev, gelek zirarê dide xweza û mirovan. Bilici got ku bi encama şewatên pirêzeyan qezayên hatûçûyê pêk tên, emîsyoneke pir xerab derdikeve holê û bo zindiyên di nav xakê de jî qirkirineke mezin e. Bilici diyar kir ku cotkar da ku 10 qirûş zêde nedin mazotê, li şûna ku zeviyan biajon, agir berdidin pirêzeyan. İ.Hakkı Bilici da zanîn ku wan wek Şaredariya Amedê, di nava 50 rojan de 1117 pirêze vemirandine û digel xweza û zindiyan ew bixwe jî zirarê dîtine û ji ber şewatê pirêzeyan amûreke wan jî şewitiye û êrîş li xebatkaran hatine kirin.

## Berpirsiyar kî ye?

Di van şewatan de tiştê balkêş ev bu ku xebatên vemirandinê ne têr bûn. Derbarê çerçoveya berpirsiyariyên sazî û dezgehan de Hakkı Bilici destnîşan kir ku digel ku şewatên pirêzeyan dikevin bin berpirsiyariya şaredariyan, gava ku ji ber van şewatan qezayên hatûçûyê pêk tên Gerînendetiya Hatûçûyê jî jê berpirsyar dibe, Gerînendetiyên Tenduristiyê, Hawîrodorê û hwd. tev dibin berpirsiyar. Her wiha Bilici da zanîn ku li gorî Biryara Lijneya Hawîrodorê ya Herêmî a 7'ê Gulana 2015'an de hatiye girtin, şewitandina pirêzeyan sûc e bes li gorî wan danekirina vê ne têr e û divê danekirinên girantir bên kirin, bi rewşa hêyî em bawer nakin ku berê van şewatan bigirin. Bilici diyar kir ku di serî de Hêzên Ewlehiyê, kes sepandina danekirinên sûcan pêk nayîne û Gerînendetiya Çandiniyê û Gerînendetiya Hawîrodorê jî ber bayê şewatan nakeve.

## Prêze û daristan bi hev re

Bilici, di derbarê şewatên daristanan de jî fikra xwe parve kir û got ku nêzîkî ji sedî 25 ya bajarê Amedê daristan e û jê re rêxistinike bihêz a daristanan divêt, bes li bajêr rêxistina daristanan gelekî bê hêz û paşdemayî ye û bi taybetî ji hêla amûr û xebatkaran ve tengasiyeke mezin dikişînin. Bilici her wiha qala şewata li Pasûrê jî kir û wiha got: "Di destê me de dîmen hene û di nav cihekî de 3 şewatên cuda pêk hat. Em vê yekê wek şewatên jirêzê û masûm nikarin şîrove bikin. Heke li qadekê ji 3 cihên cuda şewat pêk hatibe di wir de kiryareke jiqestî heye. Di şewata li Pasûrê de di destê me de delîlên me hene, dîmen hene. Digel ku armanc û kirdeyên wan nikarin bên zanîn jî li gor me şewatên jiqestî hatine pêxistin in."





# Qewme Çiyê
# Çîroka Mala Eliyê Ûnis

Evindar Tekin

Mala Eliyê Ûnis ku yek ji hozên kurdan ên ku ji mêj ve kevneşopiya serhildêriyê domandine û ji serhildana Sasonê heta ya Şêx Seîdê Pîran û dû re li Binxetê di nav Xoybûnê de cih girtine û paşê beşdarî Partıya Demokrat a Kurdistanê (PDK) bûne. Ev serhildêriya wan a ku tovê xwe li çiyayên Sasonê yên asê çandiye, van çiyayan ji xwe re kirine stargeh. Ji ber vê taybetiyê ye ji wan re 'Qewmê Çiyê' tê gotin. Di serhildana Şêx Seîd de bi Şêx Seîd re tevgeriyane û heta sala 1937'an piştî têkçûna serhildanê jî şerê xwe domandine, lê belê piştî ku şert û merc dijwartir bûne derbasî Binxetê bûne û li wir di nav xebatên Xoybûnê de cih girtine. Piştî damezirandina Partiya Demokrat a Kurdistanê(PDK) xoybûnê xwe fesih kiriye û ew jî beşdarî PDK'ê bûne. Neviyê Evdirehmanê Eliyê Ûnis, Nevzat Mirkan çîroka hoza xwe ji me re vegot.

## Nameyek ji Şêx Seîd

Mala Eliyê Ûnis, ji sala 1839'an ve bi serhildêriya xwe balê dikêşîne ser xwe. Serhildêriya wan di salên 1839, 1887, 1915'an de jî dom dike. Serkirdeyê hozê Mihemedê Eliyê Ûnis, yek ji wan serhildêrên tevgera Şêx Seîd e jî û ji bo piştgiriyê bide serhildana Şêx Seîd li Bakur gund bi gund geriyaye. Dr.Nevzat Mirkanê ku piştî koça wan a Binxetê, li gundê Maşoqê yê Qamişlo'yê hatiye dinyayê û piştî xwendina bijîşkiyê vegeriyaye Batmanê, da zanîn ku beriya Serhildana Şêx Seîd destpê bike, Şêx nameyekê ji bapîrê wî re şandiye û di nameyê de hatiye nivîsîn ku wê serhildan di 17'ê Nîsanê de destpê bike. Lê belê ji ber hin sedemên ne diyar serhildan di meha Sibatê de hatiye destpêkirin. Mîrkan anî ziman ku ji ber ku serhildan beriya dema diyarde hatiye destpêkirin, di wê kêliyê de Mihemed û Evdirehmanê Eliyê Ûnis şkestin ji pêş ve dîtiye û gotiye: "Em şikestin." Nevzat Mîrkan da zanîn ku her çiqas serhildan têk çûbe jî, Mala Eliyê Ûnis her şer kirine. Mîrkan got: "Ger ku hemû kurdan piştgirî dabûna Şêx Seîd, wê serhildan bi ser biketa. Li gel têkçûnê jî ên me teslîm nebûne û serhildanê bi 10 ssalan domandine."

## "Mal dişewitandin"

Nevzat Mirkan da zanîn ku Mala Eliyê Ûnis, bi serkêşiya Mihemedê Eliyê Ûnis û piştî mirina wî jî bi serkêşiya Evdirehmanê Eliyê Ûnis, di navbera salên 1920 û 1937'an de tim di şer de bûne. Mîrkan wiha dom kir; "Di van 17 salan de mala me 6 caran hat şewitandin. Malên me li deştê bûn. Dema leşker dihatin, ên me şerê xwe dikirin û diçûne çiyê. Bêtir diçûnê çiyayê Arzîvê. Li herêma Sasonê Karmlêh û Arzîvê çiyayên herî asê ne. Ev herêm, herêma xilasbûnê bûn, leşker nikaribûn xwe bigihînin wir û bombeyên balafiran jî bandor lê nedikir. Ji ber ku nikaribûn serhildêran bikûjin gundên deştê dişewitandin. Mîrkan derbarê şewitandina mal û mirovan de got: "Seydê Bilwansiyayê xalanê mamê Medenî Altan bû. Ji ber ku alikariya Mala Eliyê Ûnis kiribûn, dewletê ew şewitandin. Ne tenê alîkarî bikirana, şika wê jî hebûya dewletê azarên mezin bi wan dida kêşandin. Şewitandin wek rêbaz dihate bikaranîn. Mala Eliyê Ûnis bi vê rêbazê bersiv nedida dewletê. Heta ku ji şervanên xwe re digotin 'heta ji destê we tê leşkerên jirêzê nekujin, ên payebilind wek fermandar, serfermandaran bikujin."

## "30 hezar leşker hatibûn ser kalê minî Evdirehman"

Mirkan daneyeke wê demê wiha vegot; "Leşker êrîşî Mala Şerefê Eliyê Ûnis dikin û hinek wan dîl digirin. Piştî vê bûyerê pevçûn destpê dike, bi şev, ji ber ronahiya leşkeran nedikaribûn biçin Arzîvê. Ne balafir ji heqê wan dihate der û ne jî leşker dikaribûn bikevin wê derê. Wexta derbasbûna li Arzîvê leşker dengê wan dibihîzin, bi hev dikevin û xwe bi xwe dikujin. Pir ji hev dikujin. Ew jî xwe digihînin Arzîvê. Li Arzîv û Karmlêhê Belekayî û Sarmî hebûn. Mezinên wan jî Selîmê Sorkî û Teterê Badikî bûn. Ev her sê bi hev re bûn. Evdirehman, Selîm û Teter di 1930'an de serê Selîmê Sorkî û Teterê Badikî jêkirin û birin radestî dewletê kirin. Piştî vê bûyerê pişta Evdirehmanê Eliyê Ûnis şikest û ew jî derbasî binxetê bû."

## Binxet: Xoybûn û PDK

Nevzat Mirkan got ku leşkeran ji bilî ên Mala Eliyê Ûnis kes nedikuştine, wan nefî dikiriye, ew di sala 1937'an de bi şer û pevçûnan ji Batmanê derketine û derbasî Maşoqê'ya gundê Qamişlo'yê bûne, ên din jî li Anatolya'yê hatine nefîkirin û wiha domand; "Hikûmeta Tirkiye'yê daxwaz ji hikumeta Fransa'yê dike û dibeje Evdirehmanê Elî ji sînor dûr bikin, bibin Şamê. Hikumeta Fransa'yê jî wî dibe Şamê. Li Şamê Edirehmanê Elî 4-5 salan li xaka Elî Axayê Zilfo dimîne. Li Şamê, bi hewldana mezinên kurdan ên wekî Mala Celadet Beg, Elî Axayê Zilfo, Mala Şemdîn Axa dîsa vegeriyan Maşoqê, heta mirinê li wir maye. Têkiliya wî bi Xoybûnê re hebû, wexta Qazî Mihemmed û Serok Barzanî PDK damezirand wan jî tevgerên xwe fesh kirine û beşdarî wan bûne. Wexta ku kembera ereban li ser 10 km çêkirin, kurdên ku tapoyên milkên wan tunebûn ji cihên xwe hatin derxistin û berê xwe dan çolê. Mala me jî qîma xwe neanîn û di sala 1968an ji Qamişloyê de hatin Batmanê. Di 1970î de jî min jî Zanîngeha Şamê Tib qedand û ez hatim vir, 3 sal ez mame betal heta ku dîploma xwe tadîl kir û min bijîşkiyê kir." Mirkan, qala atmosfera binxetê kir û got ku di dema hikûmeta Fransayê de rewşa kurdan xweş bû, li wir hikûmet Mala Haco bû, navenda siyaseta kurdî çi çepgir çi çapgir, Maşoqê bû, komumîstên kurd xwe dispartin Mala Haco û wisa domand: "Li binxetê, Celadet Bedirxan kovara Hawarê derdixist, dişand kalê min Evdirehman. Bavê min ew dixistin sindoqekê, li bin erdê vedişartin. Di dema BAASiyan de di 1964an de êdî rewşa kurdan xerab bû. Dema ez piçûk bûm, Tirkiyeyê çawûşek şandibû da ku bavê min bikuje." Mirkan anî zimên ku ji Rojhilat û Başûrê Kurdistanê jî kurd hatine ba kalê wî û wexta kalê wî (Evdirehman) ji Mala Mihemed Şerîf dihate xwarê, her şev kurdên ji her deveran bi hev re Ey Reqîp dixwendin. Mirkan got ku Evdirehmanê Elî di Xoybûn de bû. piştî Qazî Mihemed û Serok Barzanî partî damezirand, Mala Haco, Evdiremanê Elî û kurê wî, Qedrî Cemîlpaşa, Doktor Nafiz, Doktor Zaza, partî fesih kir û xwe beşdarî PDK kirin, Nevzat Mirkan bixwe jî di 15 saliya xwe de tevlî PDK bûye. Her wiha Mirkan anî zimên ku neviyê Eliyê Ûnis ê li Sûrî Sekreterê Giştî yê PDK-S Mihemed Nezîr Mistefa û apê wî Emer Mistefa digel Dr. Nûredîn Zazayî, da ku endamên PDK-S bûbûn, li Şamê ketin girtîgeha Mezzeyê û Nezîr Mistefa 8 salên xwe li girtîgehê derbas kiriye û ên din jî bi salan girtî mane.

## Jin û şerefa serhildêran: Rindîxanê

Mirkan her wiha bexsa Rindîxanê meta xwe kir û got ku li ser Pirê Pisyarê ya li ser çemê Dîcleyê, wexta leşker hatine ser wan, meta min Rindîxan, xwe avêtiyê avê gotiye bila namûsa şêrê kurdan nekeve destê tirkan, meta min a Riqiya jî xwe avêtiye lê leşkeran ew xilas kiriye. Her wiha Mîrkan anî zimên ku beriya Eliyê Ûnis, diya Eliyê Ûnis jî rahiştiye çêk û tevlî şerî bûye. Eliyê Ûnis, di 15 saliya xwe da da ku leşkeran çêr li diya wî kirine, wî leşker tev kuştine.

Dezz Deniz:

# Hip Hop serhildêr e



Mehmet Emin Kan

Hip Hopvana kurd Dezz Deniz'a di sala 1983'an de li Midyadê hatiye dinyayê û di heman salê de tevî malbata xwe li Batmanê bi cih bûye. Denîz di 12 saliya xwe de rêya wan dikeve ser rêya Elmanya'yê. Piştî ku li Elmanya'yê bi cih dibin dest bi mûzîka Hip Hopê dike û bi kurdî, tirkî, elmanî, îngîlîzî, fransî, hîndî û erebî, stranan distirê û paşê jî albûmeke 7 zimanî çêdike. Piştî vê albumê bi navbang dibe û barê şêweya hip hota kurdî dikeve ser milên wê. Em bi Dezz Deniz re li jiyan û mûzîka wê ya bi şêweya hip hopê hevpeyivîn.

**"Min serhildana xwe û Hîp hop'ê kir yek"**

Dezz Deniz nêzîkî 20 salan e li Almanya dijî û hewl dide ku di şêweya mûzîka hip hopê de xwe bigeşîne û serhildêriya xwe bi hip hopê bistirîne. Dezz Deniz jiyana xwe ya li Elmanya'yê wiha vegot: "Min li Elmanya'yê li ser nexweşiyên hundirîn û şekirê perwerdehî dît, li gel mûzîkê 14 sal in ez asîstaniya bijîşkê dikim. Baldariya min a muzîkê bi nivîsîna gotinên stranan destpê kir. Piştî ku em bi malbatî hatin vî welatê ku çand û ziman û civaka wê ji ya me cûdatir, min bala xwe dayê ku meyla min li ser şêweyên protet û bi taybet jî li ser hip hopê ye. Min ev şêwe muzîkê tevlî lêgerîna xwe ya nasnameya neteweyî û regezî guhdarî dikir." Deniz, anî ziman ku muzîka Hîp Hopê muzîkeke serhildêr e û wê jî serhildana xwe li gel mûzîka kurd li Hîp Hopê goncivandiye û di konsêrta xwe ya pêşî de dîtiye ku ev şêwe pir bale dikêşîne û dom kir: "Çanda Hîp Hopê li Ewropayê çandeke pir belavbûyî ye û di xwe de muzîka rapê, Breakdance, nivîsîna diwaran ango Graffiti û DJ'tiyê jî dihewîne. Bi jêderka xwe çandeke protest e. Jêderka muzîka serhildana reşikên li Amerîkayê ya li hemberî sipiyan û li hemberî neheqiyan e. Min jî vê çanda muzîkê bi serhildana xwe kir yek û pêşberî kurdan kir ku di serî de ev şêwe bi hêsanî nehat pejirandin. Gava min dest bi vê şêweyê kir ez dezavantaja jinbûnê jî jiyam. Ji ber ku min muzîka çandeke cuda çêdikir. Hin derûdoran bertekên xwe nîşan dan. Lê min dev jê berneda. Bi îstîqrarî min li rêya xwe dom kir. Min dest bi perwerdehiya reqs û muzîkê kir. Min di destpêka salên 2000î bala xwe da Hîp Hopê. Min konsera xwe ya ewil di sala 2004an de li bajarê Bonn ê Elmanyayê da. Min eleqeyek mezin dît û ev yek jî ji konserên min re bû sedem.



**Bi saya hevalên xwe yên dibistanê min çanda Hîp Hopê nas kir**

Dezz Deniz qala zehmetiya ku piştî koçberiya Elmanya'yê kir û got; "Evîna min a hunerê her tim hebû. Dema piçûkatiya xwe de min dixwest ku bibim balerîn lewre min pir ji reqsê hez dikir. Piştî ku hezkirina min a muzîkê geş bû min bo xwe awazan çêdikir û xeyal dikir ku rojekê bibim hunermend û di dema zarokatiya xwe de jî hêviya min hebû ku rojekê ev ê pêk were. Piştî ku min dibistana navîn qedand em tevî malbata xwe li Ewropayê bi cih bûn û di wir de ez biyanîbûneke duyem dît û zehmetiya rikibîna şert û mercên welatekî cuda jiyam. Cara duyem hîsa biyanîbûnê ku di dilê min de çêbûbû dema ku zanîna nasnameya neteweyî û zayendî di min de gihabû min li vir hazir kir. Tam di wê demê min di xwe de li hinek tişt pirs kir, ez kî me, çima mecbûr bûm ku li vir bi cih bibim. Nasname û hebûna min çima bi vî qasî nedihat qebûlkirin? Mirin, koçberî, windakirin, tade..." Dezz Deniz, behsa nasîna xwe çanda Hîp Hopê kir û got ku: "Zayenda min a ku roj bi roj dibû kole û di bin desthilatdariya mêran de dihat zêrandin, ez dam lêgerîneke duyem. Di beşa Tibê de li ser asîstaniya bijîşkê min perwerdehiya bi 3 salan dît piştre jî li ser nexweşîna şekirê min perwerde dît. Dema perwerdehiyê de bi saya hevalên xwe ez rastî çanda Hîp Hopê hatim."

**"Hewl didim ku çanda xwe nas bikim"**

Dezz Deniza ku dengbêjî û şêweya hîp hopê kiriye yek, got ku ew dest nade berhem û şiroveyên dengbêjiyê, bes duetê dike û dengbêjên ku ew dengê wan bi kar tîne jê memnûn in. Her wiha Deniz got ku gava ew muzîkê çêdike, dengbêjiyê tîne ser dike û bi vî awayî danasîna dengbêjiyê dike û wisa domand: "Dengbêjî û şêweya gotinê a Rapê pir nêzîkî hev in. Ez Rapê wek dengbêjiya nûjen pênase dikim. Bes Rap, hê rîtmîk e û li ser "beat"ekê ango muzîka avahiya bingehîn tê gotin. Min xebata xwe ya ewil digel hozanê me yê hêja Şemdîn re amade kir. Ew hunermendekî bi salan hewl daye ku dengbêj û berhemên gelêrî bîne ber hev û ked daye kevneşopiya dengbêjiyê. Di serî de dengêjêm ku min dengê wan bi kar anîn û bi wan re duet kirin her kes jê kêfxweş in. Ji ber ku ez şêwe û berhemên wan naguherînim. Bes muzîka beatê lê zêde dikim û dewlemend dikim. Cihên ku ez danaasîna Rapê dikim, di heman demê de dengbêjiyê jî tînim ser dikê, çanda me jî nadim jibîrkirin û didim nasîn. Ji ber vê jî ez laqay tiştekî neyînî nehatim. Armanca min ev e ku dema muzîka çandeke biyanî bikim, di heman demê de nasnameya xwe biparêzim, wê derbasî nifşên nû bikim û hem jî bi qasî zimanê kurdî girîngiyê didim dengbêjiyê.

**"Ziman û muzîkeke me ya ku ji hêla hemû cîhanê ve bê nasîn tune"**

Dezz Deniz fikrên xwe yên li ser nasandina muzîka kurdî li cîhanê anîn zimên û got ku muzîk û zimanê kurdî li cîhanê nayên nasîn û muzîka kurdî dernakeve derveyî Rojhilata Navîn û ji bilî çend hunermendan muzîka kurdî serkeftî nîne, yek ji sedemên sereke ya vê yekê jî bişaftina bibandor e û wisa domand: "Muzîka kurdî wêjeya me ya devkî ye. Heke em ê rastiya xwe ya ku ei nav ev qas qedexeyan de zimanê me, dîrok û çîrokên me bar kiriye di nav muzîka cihane bi cih bikin, mixabin muzîk û zimanekî me yên ku li cîhanê tên nasîn tune ne, ji bilî hunermendên kurd ên ku bi zimanên biyanî hunerê dikin, me ew derbasî derveyî Rojhilata Navîn nekirin. Sedema vî tiştî jî elbet, zimanê me ye qedexekirî û mirovên me yên bi nefiyan hatine bişaftin e. Şivan Perwerî jî hewldana xilasbûna ji vê yekê da û muzîka kurdî derbasî asteke bilind kir. Deniz, behsa hewldana xwe ya danasîna muzîka kurdî bi mîhrîcanan, bi konserên hevpar ên digel hunermendên biyanî û bi tevîhevkirina zimanê kurdî bi zimanên biyanî kir û got ku: "Hewldana min ev e ku digel hunermendên biyanî, li welatên biyanî bi di konsêrên hevpar de an bi beşdarbûna mîhrîcanan bidim ziman û çanda kurdî bidim nasîn. Her wiha weke albuman ez zimanê kurdî û ên biyanî tevî hev dikim û bi vî awayî didim nasîn. Helbet ev yek têrê nake. Lewre li pişt hunermendên mezin û navdar, piştgiriyên mezin hene. Hem welatên wan hunermandan piştgiriyê wan dike hem jî şîrketên herî dewlemend xwedî li wan derdikevin. Bi vî awayî jî ji çawaniya muzîkê bigirin heta klîp û dikê her tişt dibe profesyonel. Ev yek jî hem guhdarvanan zêde dike bo danasîna ziman û çanda wan jî serkeftineke mezin bi dest dixe. Li pişta me, wek van piştgiriyên mezin tune. Her wiha ji ber ku şêweyeke biyanî ye bale nakişîne û rexne lê tên kirin."